

Hakan Şükür:
**Dixwazim serdana Kurdistanê bikim**

▶ 2



مەلا بەختیار:
**با بە ژمارە و ئەنالیزە بیسلەمێنن کە ئێمە گەندەڵین**

7 ◀



**Li dijî desthilata zilaman pergala hevserokatiyê**

▶ 12



Yaşar Kaya:
**Divê Kurd vegerin 'xaka pîroz'**

▶ 7

# Rûdaw

Hejmar: 3
Çarşem | 22. Tîrmeh 2009
www.rudaw.net



ÇAPA EWRÛPA

Deutschland, Österreich, Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Denmark 15,00 DKK

Nr. 3 | 22. Juli 2009 | Mittwoch

Mesûd Barzanî:

## Heta ez hebim, birakujî nabe



**Hewlêr (Rûdaw)** - Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî got 'heta ew li jiyanê be careke din nahêle xwîna Kurdan bi destê Kurdan bê rijandin.'

Barzanî hefta borî bi pêşmergeyên kevn yen PDK'ê û YNK'ê re kombû û axaftinek kir. Barzanî di axaftina xwe de bal kişand ser gengêşiyên demên borî yên nav partiyên Kurd û got ku 'wê careke din nehêle ku di nav Kurdan de birakujî biqewime.'

Barzanî di kombûnê de li ser hilbijartinên Parlamentoya Kurdistanê jî rawestiya û got ku serkeftinekî herî mezin ya vê hilbijartinê ew e, ku ew û Serokkomarê İraqê Celal Talabanî daketine nava rêzên gel. Li ser encamên muhtemel yên hilbijartinan jî Barzanî got, 'kî biserkevê, ew serkeftin jêre pîroz bê û ew li bendê ye ew kesên ku bên hilbijartin di dema nû ya parlamentoyê de hîn çalaktir bin.' Barzanî hêviya xwe jî anî ziman ku pirsgirêkên Kurdistanê ligel Bexdayê li gorî destûrê bên çareserkirin.

Serokê heremê herwiha soz da ku ewê tu caran rê nedê karekî ku bibê sedama kuştina Kurdan bi destê Kurdan û got ku, 'nabê carekî din kêfa dijminên Kurdan bê û bi Kurdan bikenin.'

Barzanî di derbarê pêwendiyên Hewlêr û Bexdayê de jî axifî û got wan bi şertê ku İraq welatêkî federal bê, yekîtiya İraqê parastiye. Li ser mijara Kerkûkê jî Barzanî bibîranî ku Kerkûk bajarêkî Kurdistanî ye û ew ji vê yekê qet paşve gav navêjin. Ji bo parastina aramiyê jî Barzanî da xuyakirin ku riya herî baş ji bo vê yekê bicihanîna maddeya 140ê ya destûra İraqê ye û bicihanîna vê xalê di berjewendiyê İraqê deye.

Barzanî li ser gefên ku li Kurdistanê tê kirin jî sekinî û got 'ew demên ku tişt li Kurdan dihatin ferzkirin borîne û êdî tu kes û hêz wê nikaribûn Enfal û kîmyabaran dubare bikin û ewê xwe nekin bin destê dîktatorên nû.'

Di dawiya kombûnê de Mesûd Barzanî xelatên rêzgirtinê dan çendîn pêşmergeyan û got ku 'ezîztirîn kes li cem wî pêşmerge ne.'

"Em di hilbijartinan de bê alî ne"

## Karayılan: Barzanî xwedî hêza serokatiyê ye

**Köln (Rûdaw)** – Serokê Konseya Rêvebir ya Koma Civakên Kurdistanê (KCK) Murad Karayılan li ser hilbijartinên Serokatiya Herêma Kurdistanê, ku wê di 25'ê vê mehê de bên lidarxistin daxuyaniyek da û got ku ew di van hilbijartinan ne alîgirên tu aliyekî ne, lê ew Mesûd Barzanî di vê dema hestiyar de xwedî wê hêzê dibînin ku karibê karê xwe pêk bînê.

Di daxuyaniya ku Karayılan di derbarê hilbijartinên parlamento û Serokatiya Herêma Kurdistanê de da ajansa nûçeyan ya Fransî AFP, Karayılan got ku ew wekî partî piştgiriya tu lîste û berendamê parlamentoyê nakin û wan biryar daye, ku bêteref bin û piştgiriya tu lîsteyê li dijî lîsteyekî din nekin.

Li ser hilbijartinên Serokatiya Herêma Kurdistanê jî Karayılan daxuyand, ku ew piştgiriya tu berendamê Serokatiya Herêma Kurdistanê nakin, lê li gor nêrîna wan ew wê hêza revebirinê di demekî hestiyar wekî niha di şexsiyeta Mesûd Barzanî de dibînin.

Di derbarê astengkirina beşdarbûna Lîsteya Hîwa ya hilbijartinên Parlamentoya Kurdistanê de jî Karayılan wiha axifî: "Em dixwazin ku hilbijartin azad û demokratîk bin. Astengkirina Hîwa binpêkirina demokrasiyê ye." Li gor Karayılan sedemê astengkirina Listeya Hîwa ya hilbijartinan siyasî ye.



*Serokê KCK'ê Murad Karayılan (Wêne: Rûdaw)*

## Bi dehan Kurd kuştine

**Firaz Baran**

**Köln (Rûdaw)** - Dozgeriya Amedê di derbarê tîmeke fermî ya ku tevlî kuştina bi dehan Kurdan bûne doz vekir. Di vê dozê de heft kesên wek Mîralay Cemal Temizöz, Kevneşaredarê Cizîrê û Sercerdevan Kamil Atak, xizmên wî û Kukel Atak, Temer Atak, îtîrafkar Adem Yakın, Hıdır Altuğ û Abdulhakim Güven tên darezandin. Mîralayê artêşa Tirk, Temizöz di salên 1990an de li Cizîrê kar dikir, sercerdevan Kamil Atak jî şaredarê Cizîrê bû. Yên din jî cerdevan û îtîrafkarên tetikkêş bûn.



*İtîrafkar Güven û Cerdevan Kamil Atak*

Dozgeriya Amedê di derbarê bersûcan de îddîanameyeke 111 rûpelî amade kiriye. Îddîaname li ser kuştin û windakirinên di navbera salên 1993 û 1996an de ye. Di vê îddianameyê de îtîrafên kujeran jî cih digrin. İtîrafkar Abdulhakim Güvenê ku li Cizîrê serkeşiya kujeran dikir, di îfadeyên xwe de wiha diaxifê:

"Di sala 1994an de me Ramazan Elçî kuşt. Elçî alîkariya PKK'ê dikir. Li Gundê Zerîstanê Evdila û Îzet hebûn. Wan jî alîkariya PKK'ê dikir. Me ew girtin. Roja din gotin ku 'ew winda bûn.' Lê ez difikirim ku hatine kuştin. Di rêşemiya 1994an de Ramazan Uykur jî hat kuştin. Uykur li Cizîrê xebatên PKK'ê dimêşandin. Sal 1994 yan jî 1995 bû. Li Cizîrê me İbrahim Adak kuşt. Wan jî alikarî didan rexistinê.

▶ 8

Alîkarê Talabanî, Letîf Şêx Umer:

## Bêhna provakasyonan ji Silêmaniyê tê



*Letîf Şêx Umer. (Wêne: Rûdaw)*

**Newzad Mehmud**

**Silêmanî (Rûdaw)** – Her ku dema dengdanê nêzîk dibe li Kurdistanê tansiyona siyasî jî bilind dibe. Bi taybetî li Silêmanî ji ber rikberiya navbera Lîsteya Goran ya Norşirwan Mistefa û YNK'ê endîşeyên derketina buyeran hemwelatiyan nerihet dike.

▶ 8

## Gaza Kurdistanê ji bo Ewrûpayê stratejîk e

**Köln (Rûdaw)** - Di nîvê zivistana borî de gelek welatên Yekîtiya Ewrûpayê (YE) bi carekê bê gaz man û bi milyonan xanî qerisî man. Çi bûbû? Ji ber gengêşiya ku di meha rêbendanê de di navbera Rûsya û Ûkranyayê li ser bihayê gazê derket, Rûsyayê şandina gazê ya Ewrûpayê bi reya Ûkranyayê rawestand û Ewrûpî bê gaz man. Vê bûyerê bi awayekekî vekirî nîşanî welatên Ewrûpayê da, ku di pêşerojê de Rûsya çawa dikarê zextê li ser wan bikê û giringiya hebûna reyên gazê yên alternatîf raxist ber çavên wan. Piştî vê bûyerê YE'yê ket nav hewldanên hîn mezintir, ku xwe ji mecbûriyeta gaza xezayî ya Rûsyayê rizgar bike û li alternatîfan geriya. Di vî warî de gaza Kurdistanê jî roleke stratejîk dilîzê. Xeta Nabucco wê Kurdistanê bi Navenda Ewrûpayê girê bidê.



Roja 13ê Tîrmehê pênc dewletên Ewrûpî – Awûstûrya, Macaristan, Romanya, Bulxaristan û Tirkiye – li Enqerê peymana avakirina Xeta Nabucco, ku dirêjahiya wê 3300 km ye, morkirin. Guftûgoyên projeya hêla Nabucco di sala 2002an de destpêkirin û tê çaverêkirin, ku karê projê di sala 2014an de bi dawî bê.

Ji bo morkirina peymanê ahengekî mezin li Enqereyê hat sazkirin. Di ahengê de ji bilî serokwezîrên welatên ku peyman morkirin, Serokê Gurcistanê Mîkail Sakaşvêlî, Serokwezîrê İraqê Nûrî Malikî, berpirsê taybet yê Emerîkayê ji bo karûbarên enerjiyê li navçeya Ewro Asyayê Richard Morngstar û Serokê Komîsyona Ewrûpayê Jose Manuel Barosso jî amade bûn. Proje ji aliyê DYE`yê jî tê piştevanîkirin. Welatên wekî Gurcistan û Iraq jî wekî jêderên pêşerojê bo misogerkirina enerjiyê tên hesibandin. Nûrî Malikî jî di ahengê de axaftinek kir. Malikî di axaftina xwe de daxuyand ku Iraq dikare bi rêya vê xetê salane 15 milyar kûbîkmetre gazê bişînê Ewrûpayê. Lê Malikî tu agahî nedan, wê kengî Iraq di warê teknîkî de amade bê, ku karibê gazê bişînê.

Hêla gazê wê di destpêkê de bi dirêjayiya 2000 km di navbera Baumgarten li Awûsturyayê û Enqerê bê avakirin û tê çaverêkirin ku karê avakirinê di sala 2011an destpêbikin.

▶ 8

Lîste ya Goran:

## 'Emê 46 kursiyan bidestbixin'



*Mihemed Tofîk Rehîm. (Wêne: Rûdaw)*

**Silêmanî (Rûdaw)** – Cîgirê Noşîrwan Mistefa yê Serokê Lîsteya Goran, Mihemed Tofîk Rehîm bawer dike ku wê hilbijartinên Parlementoya Kurdistanê ta radeyekî bi şefafî birêvebiçin û PDK û YNK henek bi pêşeroja xwe nakin: "Ew di hilbijartinê de karên dervayê yasayî bikin jî, ji ber ku em ne partiyeke siyasî ne, em nikarin wan cezabikin."

▶ 8

# Li Stenbolê Kurdistaneke Biçûk: Sûka Sêrtiyan

**Salihê Kevirbirî**

**Stenbol (Rûdaw)** - Dema mirov xwe ji Taksîma Stenbolê, ji aliyê Şîşhaneyê ber bi jêr ve berdide, kurtedemek paşê, Pira Unkapaniyê dibîne. Ji Unkapaniyê ber bi Sarachaneyê, kesê li rawestgeha duyem ya otobosan peya bibe, ji kuçeya yekem dikeve bazareke balkêş. Navê vê bazara li navçeya Fatîhê 'Kadınlar Pazarı' (Sûka Jinan) e. Lê ev bazar zêdetirî 20-25 sal in ku bi navê 'Sûka Sêrtiyan' tê naskirin. Li van dikanan berhemên Sêrtê, xwarinên herêmî têne firotin...'

'Sûka Sêrtiyan' yek ji koşeyên cihêreng ê Stenbolê ye. Li vir hûn dikarin 'Sabûna Bitimê' ku çakiyên wê bi ceribandinên klînîkî hatiye çespandin; 'Penîrê Sîrikirî', 'qelî', 'Hingivê Perwariyê', 'Çaya Seylanê' ya bibêhn ango 'Çaya Qaçax' bi bûhayên erzan peyda bikin.


(Wêne: Rûdaw)

'Sîirt Fatîh Gida Pazari' yek ji dikanên sûkê ye ku her saet û dema rojê, ji mişteriyan mişt tije ye. Dikan 30 sal berê ji hêla Hacî Mihemed Naymanê Sêrtî ve hatiye vekirin. Niha her du kurên wî; Ahmet û Can Nayman li ser karê dikanê ne. Min ji Can Nayman xwest ku ew hinek behsa dikana xwe û profîla kesên lê diqesidin bike. Texsîr nake û dibêje: 'Li dikana me 200 cure newayên xwezahî hene. Ji dendikên zebeşan bigire heta çaya seylanê; ji penîrê spî û sîrikirî bigire heta hingivê bedlîs û perwariyê; ji sebzeyên hişkirî bigire heta ava bacana û nanê tenûrê; ji sabûna bitmokan û şaranê gûzan bigire heta hejîr û simaqa Helenzê em difiroşin. Mişteriyên me êdî bûne kesên ji malbatê. Tên li cem me rûdinin, çaya xwe vedixwin, pêdiviyên xwe dikirin û diçin. Mişteriyên me zêdetir ji Sêrtê, Mêrdînê, Batmanê, Bedlîsê û Colemêrgê ne.' Ew diyar dike ku berhemên wan ji gund û bajarên Kurdan tên, lewre jî hem erzan in, hem jî xwezahî ne.


(Wêne: Rûdaw)

Ji esnafên çarşiyê bigirin heta mişteriyan û piraniya rûniştvanên derdorê ji kesên kurd û ereb ku ji Sêrtê, Batmanê, Diyarbekirê û Wanê terka cih û warên xwe kirine pêk tê. Lê mirov dikare bibêje ku rêjeya Sêrtiyan, rêjeya herî bilind e û ji sedî 80'yî zêdetir e li gorî hembajariyên din. Jixwe ev rastî ji navê çarşiyê jî xwe dide der. Heger em bibêjin li vî deverî 'Sêrta Biçûk' ava bûye bêguman dê zêde mûbalaxa di vê gotinê de neyê dîtin.

Ez bawer nakim ku kesek hatibe 'Kadinlar Pazari' û 'Parêv' ango 'Bûryan' nexwaribe. Esnafên sûkê bi xwe jî wisa difikirin.

**Werin Bûryanê**

Bûryan çi ye? Çawa tê çêkirin? Taybetiyên wê çi ne? Pêwîst e ji bo xwarineke wiha goşteke çawa bê bikaranîn? Heta ev cûre xwarin tê ser sifreya me, di merhaleyên çawa re derbas dibe? Ji bo ku ez bersivên van pirsan peyda bikim, serê sibê ligel wênekêş û teyîba xwe ya dengirtinê min berê xwe da 'Kadinlar Pazari' ya li Fatîhê. Piştî kurtedemek dikevim 'Osman Bûryan Salonu'yê. Ezê li benda Osman Varola bim. Xebatkarên aşxaneyê diyar dikin ku Osman Varola 32 sal in karê çêkirin û firotina parêvê dike.

Heta Osman Hoste tê, ez ji Kekê Emîn doza dîtina 'Bîra Parêvê' ku di bin aşxaneyê de ye, dikim. Ji wan dixwazim ku ew behsa naveroka navê 'Bûryan' û 'Parêvê bikin. Ew diyar dikin ku 'Parêv' bilêvkirina Kurdan; 'Bûryan' jî bilêvkirina ereban e.

Gava ku ez bi Emîn û Salih re di nava nîqaşeke germ de me, Osman Hoste dikeve hûndir. Ligel hatina çayê, em dest bi sohbeta xwe ya bi Osman Hoste re dikin.

**Buryanvanê yekem yê Stenbolê**

Osman Varola Erebekî Sêrtî ye. Ev 25 sal in ku terka welatê xwe kiriye. Ji gava ku hatiye Stenbolê heta niha ji bo tama devê hembajariyên xwe parêvê çêdike. Li heman sûkê 15 sal in jî li 'Osman Bûryan Salonû' yê bûryanfiroşiyê dike. Li gorî gotina wî, ew kesê yekem e ku xwarina parêvê aniye Stenbolê. Yekser dixwazim ku Osman Varola bersivên pirsên ku me çendek berê kirî, bibersivîne: Wiha dibêje: 'Serê pêşîn, em goşt û hestî ji hev vediqetînin. Şert e ku goşt bi kêmasî rojek di cemedankê de bimîne. Dotira rojê em darên ku bi qasî metroyek û nîv in davêjin bîra agir û heta ku ev dar dibin pizot, dişewitînin. Pêwîst e ku bîr bi qasî du metroyan kûr be. Piştî ku bîr sor dibe, em goştê ku me berê ji hestî 'spî' kiribûn, bi qenceyên hesinî ve dadileqînin û diavêjin bîra êgir. Piştî ku em devê bîrê bi sacên hesinî digirin, bi heriyê jî diseyînin da ku hewa nestîne. Piştî du saetan em devê bîrê vedikin. Êdî parêva me ji xwarinê re hazir û amade ye.'

Ji Osman Hoste dipirsim; 'Parêv, ji bo Sêrtiyan tê çi wateyê? Di bin simbêlan re dikene û bersiva min dide: 'Ji bo Rihayiyan îsot çiqas biqedr û qîmet be, ji bo Diyarbekiriyan ciger çiqas biqedr be; ji bo Sêrtiyan jî parêv wisa biqedr û qîmet e. Bi tenê yek Sêrtiyekî jî ku parêv nexwaribe, tuneye. Heger li Sêrtê kesekî wisa hebe, ew ne Sêrtî ye! Em Sêrtiyên li Stenbolê saet li yanzdehê nîvro parêv dixwin, lê Sêrtiyên li Sêrtê serê sibê û nîvro, rojê du caran parêv dixwin.'

Herçiqas Sêrtî be jî, Osman Hoste diyar dike ku yekem car parêv ji hêla Bedlîsiyan ve hatiye çêkirin û ji alî wan ve parêv hatiye Sêrtê. Lê ew nikare bersiva pirsa me ya bi rengê; 'yekem car parêv ji hêla kê ve û kîjan demê hatiye çêkirin?' bide. Lê ew dibêje ku di dema bapîrê wî de jî li Sêrtê parêv dihate çêkirin.

Heger rojekî riya we bi Stenbolê ket û we xwest parêv ango bûryana xweş bitamijin û li gorî demsalê tolik, qîvar, ribêz, kereng û soryazkê bikirin û bibin mala xwe, 'Sûka Sêrtiyan' li Fatîhê, ligel çayxane û kursiyên biçûk ên rûniştinê li benda we ye...

# Tirkên Çermreş Dilbikul in

**Welat Badikan**

**Stenbol (Rûdaw)** – Tirkên esilafrîqayî yanê yên çermreş ku bi lorika "Baran dibarê/Çem diherikê/Keçên Ereb ji pencereyan dinêrin" bi zarokan re mezin dibin, ev 120 salin li Tirkiye'yê di bin pirsgirêkên xwe de dinalin.

Hosteyê mermerê Mustafa Olpak ji bo balkişandina ser hebûn û pirsgirêkên Afro-Tirkan pêşangehek wêneyan lidarxist, komelek sazkir û derdên 120 salan li ser çend mitro çargoşe bicîhkir. Tirkên esilefrîkayî ku di dema dawiya Dewlata Osmaniyan bi riya bazirganiya esîran, ku bi destê rêbiran dihat kirin, anîn Anatolyayê, dest bi nivîsandina dîroka jiyana xwe li Anatolyayê ya 120 salî kirin.

Êdî komelên nifşê 3. yên Afro-Tirkên kû pêşiyên wan ji Somalya, Sûdan, Cezayir, Misir, Libya û Etyopya'yê hatine, hene. Armanc ewe ku ev komel xwe bighînin hemû Afro-Tirkan, lê rewşa jîyan û nizimbûna statuya wan ya civakî li pêşiya vêyekê dibê asteng.

Mustafa Olpak ê ku "Komela Alîkarî û Hevkariya Afrîqayiyan" damezrand, kesayetiyek pirrenge. Olpak li ser serpêhatiyên 120 salan yên esilafrîqayiyan du pirtûkên bi navê "Ji Esaretê Berbi Azadiyê Jina Ereb Kemale" û "Kenya-Kreta-Stenbol - Esîr" nivîsandiye û dixwazê dîroka Afrîqayiyan ya devkî jî binivîsê. Olpak ê ku hewleke mezin ji bo dîtina wan Afrîqayiyên ku li rojavayê Anatolyayê hatine bicihkirin didê, niha li benda bersivdayina daxwaza alîkariyê ji UNESCO'yê ye, ji bo ku sosyolog û zanyarên civakî bikevin nav lêkolînan.

Di dema xebata komeleyê de Olpak rastî reaksiyonên balkêş tê: "Di çalakiya dest bi xebatkirinê de kesên ku digotin 'Reşik ji kuderê derketin? Li vî welatî esîrên reş hene?' hatin bihîstin. Li vî welatî ji Çerkesan bigire heta Bosnayiyan, komelên herkesî hene, lê kesek napirsê çima evyek hatine avakirin." Tevlî hemû reaksiyonan di dema xebatê de çendek kesên esilafrîqayî û lêkolînerên bi mijarê re mijûl tevlî karên komeleyê bûn.

**Li Anatolyayê 2 milyon Afrîqayî hene**

Li gor Olpak ji wan kesên ku li cihên berav yên navbera Antalya û Stenbolê dijîn du milyonên wan Tirkên Afrîqayî ne, lê wî tenê dikarîbû xwe bihgînê beşekî biçûk ji wan û piraniya wan kesên ku wi karîbû xwe bighînê wan bi giranî li İzmir, Aydin, Mugla û Balıkesirê dijîn.

Li gor Alpak Sûdaniyên ku Hidir Ali Paşa di salên derdora 1800î anîn li Muğla, yên ji Misir û Libyayê li İzmir û derdora wê, yên ji Somalya, Kenya û Cezayirê jî li navçeya Aydın Sokeyê dijîn û çîroka hatina Afrîqayiyan ya nav xaka Dewleta Osmaniyan wiha rave dike: "Piştî ku di sala 1857an Osmaniyan bazirganiya esîran tê qedexe kirin, efserên keştîgehan hatin girtin û hevwelatiyên reşik dighijin azadiya xwe. Di wê demê de bi taybetî revandina Afrîqayiyan ji aliyê rêbiran û firotina wan weke esîr di nav axa Osmaniyan de balkêş e. Di destpêkê de wan li Îzmîr'ê di bin karantînê de digrin û paşê wan li gundên herêmên berav ku ji nû ve tên avakirin bicih dikin, wan paşde naşînin. Bi giştî ji ber ku bihevre jîyana xwe didomînin, esilafrîqayiyên li Tirkye'yê çanda xwe parastine, winda nekirine."

Xewna Mustafa Olpak ya herî mezin ewe ku herê Afrîqayê û şopên pêşiyên xwe bibînê. Li gor encamên lêkolînan nêzîkên bapîr û dapîrên wî li Kenya'yê, di nav êla Kim de dijîn: "Îro jî ev êl heye, lê di şertên nemodern de jîyana xwe didomînin. Eger derfetê bibînim, armanca min ya herî mezin ewe, ez herim wêderê û wan bibînim."

### Futbolvanê Tirk Hakan Şükür bo Rûdawê axifî:

# Dixwazim serdana Kurdistanê bikim

**Rûdaw (Taybet)** – Li Tirkiyeyê derfet ji me re çêbû ku em hevpeyvîneke bi kevne futbolvanê efsaneyî yê Galatasarayê re bikin, ku wî jî bi kêfxweşî qebûl kir û derfet da me çend pirsan jê bikin. Wî çend wêneyên albûma xwe ya taybetî jî pêşkêşî Rûdawê kirin. Hakan, di dîroka Mondîalê de xwediyê lezgîntirîn golê ye û sala 1997an de xelata FÎFA'yê ya baştirîn golkerê cîhanê stendiye. Ew dû caran jî bo bijardeya cîhanê jî hatiye hilbijartin. Hakan Şükür di hevpeyvîna gel me de xoşewistiya xwe ya bo gelê Kurd nîşan dide û bi kêfxweşî pirsên Rûdawê dibersivîne.



**Ger hûn bên vexwedin, hûnê serdana Kurdistanê bikin?**

Dema ez û hevalên xwe yên Kurd tên cem hev ez pir kêfxweş dibim. Ji bilî vê yekê jî gelekî dixwazim heta bizanim asta ciwanên Kurd di lîstika futbolê de çawa ye. Ger bêm vexwendin yan di wê derbarê de hewlekî hebe pir bi kêfxweşî serdana welatê we dikim. Dizanim li herêma we jimareyeke zêde hevwelatiyên Tirkiyeyê jî dijîn. Herwiha çendîn dibistan jî hene ku Tirkan vekirine. Ji aliyê min ve cudahî di navbera Kurd û Tirkan de nehatiye rojevê, em birayê hev in.

**Gelo tu difikirî di pêşerojê de bibî rahênerê yaneya Galatasaray?**

Di wê derbarê de tevî gelek dewreyan bûme û min bawernameya rahêneriyê standiye. Lê ji bo her karekî demeke diyarkirî heye. Niha li karekî bi wî awayî nafikirim. Lê di heman demê de bi hemû şêwazekî dirêjî bi xizmeta Galatasarayê didim.

**Projeyeke werzişî li ber destê we heye?**

Di pêşerojê de bo her daxwazên Galatasarayê amade me. Ew yane wek mala min e, qet wextekî xwe li derveyê wê yaneyê nabînim. Lê berî hemû tiştekî dixwazim dibistana fêrbûna futbolê damezrînim. Bo vê yekê jî di pêşerojeke nêzîk de dest bi kar dikim. Di vî warî de hewldidim giringiyê bi hêz û karîna ciwanan bidim. Herwiha dixwazim bo Tirkiye û cîhanê yarîzanên nû bigihînim. Herwiha li gel çend hevalan em hewldidin yaneya Sakaryasporê ku têde fêrbûme, zîndî bikin û ji bo wê mebestê jî planeke me heye.

**Di derbarê wê bernameyaTRT 6ê de ku hûn jî amade bûn, çi dibêjî?**

Kurdî nizanim, lê ez hebûna wê kenalê pêwîst dibînim. Beşdarbûna min di wê bernameyê de ne bi zimanê futbolê bû, lewra tenê min nerînên xwe anîn ziman, dema bi hevalên xwe yên Kurd re diaxifim pir kêfxweş dibim. Bo wê bernameyê li gel Mehmet Gönul Açarê Batmanî yê hevalê min û yarîzanê Galatasarayê bi hevre hatibûn vexwendin. Ew hevalê min ji ber Kurd bû bi Kurdî dizanî, lê min nedizanî, ligel wê jî pir kêfxweşbûm ku beşdar bûm.

### Serokê Lijneya Erebên Kerkûkê:

# Hilbijartina bê rezamendiya Ereb û Tirkmenan dibe sedema şer

**Ako Mihemed Şivanî**

**Kerkûk (Rûdaw)** - Serokê Fraksiyona Ereb li encûmena perêzgeha Kerkûkê ji Rûdawê re ragihand: "Encamdana hilbijartinan bê rezamendiya Erebên li Kerkûkê, dibe sedema şerê navxweyî."

Serokê Fraksiyona Erebên Parêzgeha Kerkûkê, Mehmûd Cibûrî di daxuyaniya xwe ya ji bo Rûdawê de ragihand ku ew rê nadin beriya cîbicîkirina daxwazên wan hilbijartinên encûmena parêzgehê bên kirin: "Ji mêjve ye em daxwaza dabeşkirina postên Kerkûkê wekhev û ji bo hemû neteweyan dikin. Heta rêxweşkerî ji bo daxawzên me neyê kirin û nekevin warê cîbicîkirinê, bi taybetî kêmkirina desthilata Kurdan di wî bajarî de û cêgirbûna wekheviya desthilatê ji bo hemû neteweyan, çênabe ku hilbijartin pêk bên."

Serokê Fraksiyona Ereb wisa berdewam dike: "Di raporên cuda yên her yek ji netewên Kerkûkê de, ku ji bo parlemanê Îraqê hatine pêşkêşkirin wekheviya xalên daxwaziyên wan nayê dîtin. Bo wê armancê perlemanê Îraqê lijneyek nû ji bo guhlêdana daxwazên hemû netewên di Kerkûkê de û çareseriya pirsgirêkên hilbijartinê, di wê salê de, ava kir."

Endamê parlemanê Îraqê di Fraksiyona hevpeymana Kurdistanî de, Ehmed Enwer ji Rûdawê re got ku lijneyekî ji bo guhlêdana hemû neteweyan û nêzîkirina wan pêk hatiye: "Lijne ji rawêjkarê yasayî yê parleman û çend endamên din yên parlemanê pêk hatiye. Li ser nêzîkahiya di navbera netewan de kar dikin, ger bi sernekevin, biryara dawiyê vedigere ser serokkomar, parlemen û hikûmetê."


Kerkûk (Wêne: Rûdaw)

Ji bo encama hilbijartinên parêzgeha Kerkûkê, beriya meha cotmehê divabû ku lijneya maddeya 23an, ji yasa ya encûmena parêzgehan, raporan pêşkêşî parlemanê Îraqê bike, lê fraksiyona Ereb û Tirkmanî ji encûmena Parêzgeha Kerkûkê dixwazin ku, li ser bingeha ji sedî 32 kursî ji bo her yek ji Kurd, Ereb û Tirkmanan û ji sedî çar ji bo Aşûrî û Kildaniyan e. Ew parêzgeh dabeşî çar navçeyên hilbijartinê bibe. Herwiha ji bo serjimêriya Îraqê ku biryar di cotmeha îsal de bên encamdan. Ji ber hatina Kurdên navçeyên din bi nav Kerkûkê, an nabe serjimêrî li Kerkûkê bê kirin an jî nabe navên netewên di Kerkûkê de bêne nivîsandin.

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, roja 14/7/2009an di daxuyaniyekê de agahdarî da, ku pêşîgirtina madeya 140 û hilbijartinên parêzgeha Kerkûkê tiştekî wiha niye ku Kurd li hember bêdeng bin. Herwiha her cure hilbijartinek bi wî awayî red kir û got: "Eger hilbijartin bê kirin, tu wateyeka hilbijartinê namîne û ger neyê encamdan baştir e."

Şandeke leşkerî ya Amerîkî bi serokatiya general Mike Molen, di roja 13/7/2009 an de serdana Kerkûkê kir û bi nûnerê neteweyan re civiya. Fraksiyona Kurd ya Parêzgeha Kerkûkê destnîşan kir ku wan bi şandê re, bi awayekî rasterast bahsa navçeyên dabirî ji Kurdistanê kirine.

Cîgirê Serokê Partiya Niştimanî ya Tirkmanî Elî Mehdî jî got ku lazim e Kerkûk ji bo hemû netewan wekî hev be: "Nehiştina binpêkirina mafan, gendelî û dabeşkirina kursiyan bi rêjeya sedî sî û du bo hemû netewan ji daxawzên me yên sereken e. Bi taybetî çareseriya wan hemû Kurdan ku ji bajêrên din yên Kurdistanê hatine Kerkûkê, lazim e tevahiya wan pirsgirêkan çareser bibin û piştre kar ji bo hilbijartinan were kirin. Ji xeynî wê encamdana hilbijartinên parêzgeha Kerkûkê ji bilî fitne û nûkirina pirsgirêkan tu encamek3 din nade."

# Li Kurdistanê salane 70 ton patat tê xwarin

**Rewa Ebdulla**

**Hewlêr (Rûdaw)** - Cotyar Zeynel Umer bi alîkariya wezareta çandinê, li gundê Çemedûbizî li 5 donim zevî patat ajot. Zeviyên wî bi patatan tijî bûbû: "Eger wezareta çandinê tovê patatan ji min re misoger bike, ezê temamê zeviyên xwe bikim patat."

Wezareta çandinê ji bo pêşxistina berhemanîna patatan, wek proje li 200 cotyaran tov belavkir. Pisporên çandinê dibêjin, eger ew zeviyên patatan serkeftî bin, di pênc salên din de, wê Kurdistan di warê patatan de bibe xwedî berhemeke temam û êdî pêwîstî bi patata derve namîne. Wezareta çandinê sala borî jî wek test li ser 100 donim zevî patat çandibû.

Bi mebesta anîna cûrekî patatan ku digel xak û seqayê Kurdistanê guncayî be, di sibata îsal de tîmeke wezareta çandinê çûn Hollanda. Şêwirmendê Wezareta Çandinê Nerîman Tofîq ragihand ku wan nêzî 952 ton patatên ji cûrên Fabwîla, Folfa, Profînto, Arnova û Silvana ji Hollanda anîne: "Bi mebesta zêdekirina çandina berhema patatê me ev tov li cotyarên Kurdistanê dabeşkir. Îsal 808 donim zevî bi wan pênc cûre patat hatine çandin. Piştî ku eşkere bû kîjan cûr baş e, emê payiza îsal, rûberê zeviyên çandî yên patatên dûcarkî bikin."

Li gor amarekî wezareta çandinê, hevwelatiyekî salane 15 kîlo patat buxwe, li Herema Kurdistanê pêwîstî bi 70 hezar ton patat heye.

Rêveberê Giştî yê Plandanînê li Wezareta Çandinê, Enwer Umer Qadir dibêje, pêwîste îsal rêjeya berhemanîna patatan li Kurdistanê bilind bibe ji sedî 10-15. Ji pêwîstiya Herema Kurdistanê, ji bo pênc salên pêşiya me jî, wê zeviyên hundir ji sedî 100 pêwîstiyên Herema Kurdistanê dabîn bikin. Îsal li Kurdistan'ê bi giştî li 1600 donimî patat hatine çandin.

Cotyar Ebdullah Silêman îsal 650 ton patat li 750 donim zevî çandiye. Ew di wê baweriyê de ye ku wê 6 hezar ton patat ji zeviyên xwe werbigire: "Heta niha min ji 100 donimî 900 ton behrem hildaye."

Cotyarekî din Qadir Hemedemîn ji 5 ton patat ajotiye: "Divê hikûmet salekî yan dû salan alîkariya cotyaran bike û paşê cotyar bi hêviya xwe ve bimîne."

Pisporên çandinê amaje dikin ku eger bi şêweyekî zanistî bê bikaranîn, seqayê Kurdistanê ji bo hemû cûrên berhemên çandinî bi kêr tê.



Pisporê Regezî yê Koleja Çandinê ya Zanîngeha Selaheddînê, Dr. Mihemed Faris gelek peznê xaka Kurdistanê dide û ew wek "nefta berdewam" binavdike. Ev navlêkirin jî ji bo çandiniyê bikar tê: "Xaka Herema Kurdistanê, baştirîn xak e û dikare hemû berhem lê bê çandin." Ew mamostayê zanîngehê dibêje di vê qonaxê de, hikûmet alîkariya cotyaran bike û piştgiriya wan bike da ku ew vegerin nav zeviyên xwe: "Çunkî di vê qonaxê de, pêwîstiya cotyaran bi misogerkirina çavkaniyên av û tovê baş, zibla kîmyayî, aletên pêşketî û şêwirmendiyê heye."

# 'Hewlêr ne Qendehar û ne Kabûl e'


(Wêne: Rûdaw)

**Emman (Rûdaw)** - Zên Emced Ebcuqe, keçeke Çerkez e ji Urdinê. Berî ku seredana Hewlêrê bike, di xeyala xwe de wisa danîbû ku diçe bajarekî paremayî wekî Qendehar û Kabûlê, lê gava ku par bo cara pêşîn digel Kompaniya LG'yê hat Kurdistanê, jê re xuya bû ku texmîna wê ne durist bû.

Zên Emced, dibêje her ji balafirxaneya Hewlêrê ew hesta wê nema, hest kir ku Hewlêr yek ji bajarên bedew, xweşik û pêşketî ên herêmê ye.

Zên berpirsiyara reklam û pêwendiyên LG'yê ye li Rojhilata Navîn. Derbarê hatina xwe pêşîn a bo Hewlêrê de got: "Min jê ve bû ku Hewlêr bajarekî parvemayî ye, lê berevajî texmîna min, bajar cûrek din derçû, her ji pêşwaziya Balafirxaneyê Hewlêrê bigire heta Hotela Navdewletî ya Hewlêrê û gundê îngilîzî ji min re ron û eşkere bû ku yek ji bajarên xweşik û bedew ên deverê ye".

Zên li wan çend carên ku seredana Hewlêrê kiriye, hest bi mêvandostiya kurdan û rêzgirtina wan a ji xelkê biyanî ve kiriye.

Zên bi eslê xwe çerkez e, ku mînorîteyek in li Urdinê. Sîma û rûçikê wan ji xelkê Qafqazyayê nêzîk e, wan di sedsala hejdehan de ji Naverasta Asya û Rojhilata Rûsyayê ve ji ber şerê Osmanî û Rûsîyan koç kiriye û beşek ji wan hatine Şamê. Digel veqetiyana Urdinê ji Sûriyeyê, çerkez welatînameya Urdinî wergirtine û bûne regeza sereke ya vî welatî; çend kursî di parlemana Urdinê de hene û beşek ji cil û bergên Pasevaniya rûmetî ya Şahê Urdinê kincên resen û gelêrî yên çerkezan in. Her ji dema kevn ve bûne musulman, lê belê ji bo parastina taybetmendiya xwe ya neteweyî, li Urdinê jinxwazî û şûkirina keçan her di nava wan bixwe de ye. Zimanê wan ê cuda heye.

Lê Zên berevajî keçên din yên çerkez gustîlka dezgîraniyê bi xortekî Urdinî yê ne çerkez veguheriye. Emrê wê 24 sal e û derçûya Kolêja Endazyariya Teknîkî ye, hevsoziya wê ji bo kurdan ji dîtin û nêrîna êş û kulên neteweya çerkez ve ye ku di pêvajoya dirêj ya dîrokê de her zordarî bi ser wan de hatiye. Zên heyiriye li ber rewşenbîrî û mejîvekirîbûna wan kurdên ku ew nas dike; herwiha, pesnê nandan û têkeliya xelkê kurd kir û got: "hejmarek zêde ji Kurdên Îraqê di salên 90'î de li bajarê Zerqayê cîranê mala dapîra min bûn, her wê demê bûne dost û hevalên me û piştî wê ku mafê penaberiyê ji Swêd û Awustraliyayê wergirtin, ew der bi cî hiştin, lê peywendiya wan digel me her berdewam bû".

### Rêveberiya Hewanasiyê:

# Li Herêma Kurdistanê îsal jî hişkesalî ye

**Hewlêr (Rûdaw)** – Li gor serhejmarî û zanyariyên Rêvebiriya Giştî ya Keş û Hewanasiya Kurdistanê, îsal jî Herêma Kurdistanê rastî hişkesaliyê hatiye, ji ber ku baran bi rêjeya pêwîst nebariye.

Birêvebiriya Giştî ya Keş û Hewanasî û Erdhejê li Kurdistanê, raporek di 30 rûpelan de ji bo civata wezîran amade kiriye û di wê raporê de wê yekê derdixe holê ku li çend deverên Kurdistanê hişkesalî ye. Di rapora han de, hemû rêjeya barîna baranê di şeş salên derbazbûyî de li navçeyên cuda cuda yên Kurdistanê, ji bilî sala borî ku hişkesalî bûye, hatiye wergirtin û piştre li gor rêjeya barîna baranî îsal hatiye nirxandin.

Li gora vê pîvana durust ya ku hatiye danîn, eger qasê baran barîna îsal (meha 9/2008 heta 5/2009) bi nirxandin digel şeş salên borî, ji sedî 65 zêdetir biba, wê demê îsal weke hişkesalî nedihat hesibandin, lê ji ber ku bi giştî kêmtir e, lewra hişkesalî ye.

Rêveberê Giştî yê Keşnasiyê, Hesen Wehab, ji Rûdawê re wiha ragihand: "Li Silêmaniyê bi giştî hişkesalî ye û li Hewlêr û Duhokê jî hişkesalî nine. Lê di nav Silêmaniyê de, li çend herêman hişkesalî tune ye û li Hewlêr û Duhokê jî li çend navçeyan hişkesalî ye. Lê bona ku pîvaneke fermî hebe, ji bo hemû Kurdistanê hejmareke tevahî dê were wergirtin û wê demê dê biryar bihê standin. Ji bo hemû Kurdistanê jî qasê baran barînê li gora çend salên borî ji sedî 63.6 bûye. Lewra eger em bi tevahî werbigrin, îsal hişkesalî ye."



Sala borî Hikûmeta Kurdistanê ji bo berbirûbûna hişkesaliyê, zêdetirî 80 milyon dînar terxan kiribû. Ji bo îsal hişkesalî nehatiye ragihandin û tu pere jî nehatiye terxankirin.

Rûdaw

**Xwedî:** Rudaw Media GmbH
**Serokê Civata Birêvebir:** Nûredîn Weysî · nuradinwaisi@rudaw.net
**Sernûser:** Ako Mihemed · akopress74@yahoo.com
**Rêvebirê Beşa Kurmancî:** Faysal Dağlı · faysaldagli@rudaw.de
**Rêvebirê Beşa Soranî:** Hêmin Ebdulla · hemen@rudaw.nl
**Navnîşan:** Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a · 50823Köln/ Almanya
**Telefon:** +49 (0) 221.26 00 40 02 · **Telefax:** +49 (0) 221.26 00 49 81
**Web:** www.rudaw.net · **E-maîl:** info@rudaw.de (Beşa Kurmancî)
**E-maîl:** rudaw@rudaw.net (Beşa Soranî)

### Hîndekara Zanîngeha Colombiayê Kelly Stuart:

# Min digot qey Kurd kêmneteweke biçûk e

Salihê Kevirbirî

**Stenbol (Rûdaw)** - Kelly Stuart jineke Amerîkî ye ku ji destpêka salên 2000an ve dêhn û bala wê li ser jiyana Kurd an e. Siyaset, çand, huner, jiyana rojane ya Kurd an ji bo wê pir girîng e. Heta niha gelek caran ji Amerîkayê dide rê û ji bo li ser Kurd an lêkolînan bike û binivîse, tê Bakurê Kurd istanê.



Stuart nivîskara lîstikên şano ye. Li Calîforniya çêbûye, lê ev deh sal in ku li New Yorkê dijî. Ev deh sal in li Zanîngeha Columbiayê, Beşê Şanoyê kar dike û dersa şanoyê dide. Carcaran li hin zanîngehên dinê jî dersdariyê dike. Wê heta niha 20 lîstik nivîsîne. Lîstikên wê li şanoyên sereke yên weke New York û Los Angelesê, herwiha li London, Mançester, Berlîn, Bukreş û Tokyoyê hatîne lîstin.

Ew piştî lîseyê dest bi zanîngehê dike, lê dev ji zanîngehê berdide û li şîrketeke şanoyê dest bi kar dike. Du salan li şanoyekê dijî. Ji gelek nivîskaran re wekî alîkar, bi qasî du salan kar dike. Paşê bi hevalên xwe re şîrketeke şanoyê ava dike. Li wê derê lîstika xwe ya yekem dinivîse û dilîze. Ev lîstik dike ku ew bala şanoyên mezin bikişîne. Piştî vê yekê naskirina wê ya navnetewî çêdibe. Bi xwe jî hunereke navneteweyî dike.

Ew çendek berê, beriya ku biçe Amedê, li Stenbolê bû. Derfet çêbû ku em sohbeteke xweş bikin. Di sohbeta me de zêdetir min xwest ku ew bahsa serpêhatiyên xwe yên li ser Kurd an bike û ramanên xwe yên li ser wan bo me rave bike. Jê dipirsim: "Yekem car li ku derê û çawa tu pêrgî Kurd an bûyî ?" Bersiva wê weha bû: "Cara yekem dema min li ser nivîsandina lîstikek navneteweyî kar dikir, ez pêrgî Kurd an bûm. Min dixwest ez li ser mafên mirovan û neftê binivîsim. Lewma min li ser Rojhilata Navîn bi gelek kesan re hevpeyvîn kirin. Wê demê min nivîskarekî Kurd yê Colemergî, ku li Amerîkayê dijî, dît. Piştî ku wî bahsa serpêhatiya xwe kir, rabû bahsa çewisandina li ser ziman û çanda Kurd an; li ser zilm û zordariya li ser Kurd an kir. Wê demê min fedî kir, ji ber ku tu agahdariya min li ser Kurd an tunebû. Min wekî nivîskareka ku ziman ji bo wê her tişt e, ji xwe pirsî, gelo li welatekî ku zimanê mirovan wekî sûc tê dîtin, jiyan çawa ye?"

Meraq dikim, gelo beriya ku Kurd an nas bike, li ser wan çi difikirî û niha çi difikire? Wekî ku li benda pirsek weha bê, dibişire û bi heyecan dibersivîne: "Şanoyekê bi navê 'Guthrie Theatre' li Minneapolisê ji bo lêkolîn û nivîsandina şanoyekê ez şandim Tirkiyê. Ez di havîna 2004an de hatim Stenbolê. Min digot qey Kurd kêmnetew in; biçûk, zeîf û bi dizî ne. Dema ku cara yekem li otelê min karkerekî Kurd dît, ez gelekî kêfxweş bûm û min ji xwe re got ez gelekî bi siûd im. Min Kurdekî dîtibû! Pir xweş bû. Di demeke kurt de min fêhm kir, yên ku ez dibînim hemû Kurd in. Stenbol di cîhanê de bajarekî Kurdan yê herî mezin bû û devera ku Kurd lê dijîn ne kêmnetewin. Wê demê hêviyek ji bo pengaveke nû hebû ji ber ku Tirkiye dixwest bikeve Yekîtiya Ewropayê. Lê ji bo min rewş pir baş xuya nedikir. Wekî mînak zilamekî ku hewl dida, ji min re îspat bikê ku rewş ber bi başiyê diherê, wiha digot: Pirtûkeke ji wêneyan heye, navê wê 'Kurdistan: Di bin siya dîrokê de' ye. Wênekêşeka Amerîkî bi navê Susan Meiseles nivîsîbû. Wê ev pirtûk weke diyarî ji vî zilamî re şandibû. Lê ev pirtûk qet ne gîhabû destê wî. Bi ser de polis nivê şevê hatibûn girtibûn ser mala wî, biribûn qereqolê. Xwestibûn fêhm bikin, çima hin kesan pirtûkekî wiha ji wî re şandine? Ew roj û şevekê girtî maye û pirtûk jî nedane wî. Kêfa wî dihat û wiha digot: "Wan îşkence li min nekirin û li min nexistin! Tu dibînî, vaye rewş baştir dibe!.."



Dixwazim hinek bahsa serdana xwe ya yekem bo Amedê jî bike. Em guh bidinê: "Dema cara yekem ez çûm Amedê, bi rastî ez şaş û metel mam. Min ew der bi tevahî weke welatekî din dît. Nasnameya mirovan pir xurt bû..." Gotina wê dibirim û dixwazim hîn bibim; "Heger ji te re bêjin, li ser Kurdan çend tiştan ji me re bêje, tiştên sereke ku tu bêjî wê çi bin?". Bersiv balkêş e:"Yek jê ew e, dema ku Kurdek dest bi serpêhatiyekê dike, kesên li dorhêlê kenekî mezin dikin. Ez bawerim di cîhanê de kesên herî zêde ji henekan hez dikin Kurdin. Paşê ez dixwazim ew ji min re tercume bikin, çima ew bi bûyer û serpêhatiyên trajîk dikenin?"



Gelo ew heta niha çend caran çûye herêma Kurdan, çûye kîjan bajaran, li wan deran çi kiriye? Ew dibêje ku herêma yekem ku çûyê Amed bûye. Ji bo lêkolînê çûye wir. Li wê derê bi gelek mirovên siyasî re hevpeyvîn kirine. Lê ji bo wê koma herî girîng Dengbêj bûne. Ew wan wekî 'pirtûkxaneya dimeşe' bi nav dike. Diyar dike ku wê bi rêya dengbêjan, bi helwesteke hestedar dîroka Kurdan nas kiriye: "Di her du serdanên xwe yên destpêkê de ez li Amed, Mêrdîn, Riha, Êlih, Heskîf, Wan, Qers, Çewlik û Dêrsimê geriyam. Paşê min gelek dema xwe li gundê Karerê, ku nêzî Gêxiyê ye derbas kir. Min derbarê kar, stran, gotin û rengê jiyana Kurdan de gelek vîdeo û wêne kişandin, nivîs nivîsandin."

Stûart pirsa bi rengê; "Tu kar û xebatên xwe yên li ser Kurd an bi Zanîngeha Columbiayê re parve dikî gelo? Zanîngeh ji bo van xebatan alîkariya te ya madî dike an na? Weha dibersivîne: "Ev kurtedemek e ku ez bi zanîngehê re parve dikim. Jiber ku ez di beşê şanoyê de me. Ne di zanyariya Rojhilata Navîn de an jî zanyariya polîtîk de me, hevalên min gelek caran baldariya min a li ser vê mijarê fêhm nakin. Min du heb alîkariyên mezin ji saziya şanoyan wergirt. Şanoya "Turhrie" û "fona Jerome". Fona Jerome bi taybetî alîkarî da min jibo ez lêkolînê li ser çanda devkî ya Kurd an bikim."

Pirsa ka gelo taybetmendiya Kurdan ku Kelly ji wan aciz dibe û taybetmendiya ku jê hez dike çi ye? weha dibersivîne: "Ez gelekî aciz dibim û li ber diketim dema Kurdekî nasnameya xwe înkar dikir anjî kêm didît. Lê li gel hemû zilm û zorê; hêz, jiyan û hewildana Kurdan ya afirandinê tesîreke mezin li min kir. Gelek nivîskarên Kurd ji bo nivîsîne û ji ber ramanên xwe ketine zîndanê. Lê ligel her tiştî, ew dixwazin û hewl didin li şerefa gotina xwe xwedî derkevin. Min li gundekî jinek navsere dît, ez bawer im wê xwendin û nivîsandin nizanîbû. Lê wê ji min rica kir û got; 'Ji kerema xwe ji Amerîkayê re bêje, bila firotina 'Predator Drones' ya bo Tirkiyê rawestîne.' Ev jina 'bê tahsîl' ji gelek jinên rojava yên bi tahsîl bêtir têgihiştiye. Wê qîza xwe li çiyan wenda kiriye, ew dizane çima, ev jî hêzê dide wê û wê xurttir dike..."

# NY'yê ji Tirkiyeyê Zarokên girtî pirsî



**Stenbol (Rûdaw) –** Mijara zarokên girtî yên Kurd hatin rojeva Netewên Yekgirtî. NY'yê di derbarê 300 zarokên Kurd yê girtî ku temenê wan di navbera 12 û 18 salan de ye, daxwaza eşkerekirin û zelalkirina bilez ji Tirkiyeyê dike. Li gor NY'yê zarokên girtî di rewşeke dijwar û nebaş de, bi tawankarên mezin re, xistine nava girtîgehê.

Zarokên ku bi sedema 'avêtina sloganên ne yasayî' an jî kevir avêtina polîsan hatine girtin, wek 'terorîst' hukum ku li wan hatiye birîn. Cezayê gelek zarokan nêzîka bîst salên zindanê ye. Bi vê yerkê re dewleta Tirk ku berendama Yekîtiya Ewrûpayê ye, gelek peymanên navnetewî binpêdike.

Di derbarê çarenûsa zarokan de ji aliyê NY'yê ve lîsteyeke dirêj ya pirsiyaran gihîştiye hikûmeta Tirkiyeyê, ku divê rayedarên Tirk ron û eşkere bikin, ka rewşa zarokên girtî çawaye û çend kes in. Herwiha Tirkiye divê zelal bike ku pênaseya 'terorîst' çiye, ku bi sedema wê ew zarok cezakirine. NY'yê ji bo bersivandina vê pirsiyarê sê hefte muhlet daye Wezareta Dadê ya Tirkiyeyê.

Li gor raporên Komeleya Mafê Mirovan (İHD) ji sala 2006an virve 1600 zarok bi sedema bezandina yasaya dijî terorê hatine darezandin. Di salên dawîn de, ew qanûn gelek tund bûne. Zarok piranî di dadgeha tawankarên mezin û wek mirovên mezin tên darezandin. Her li gora wê guhertina di zagonê de, mafê dozgeran tuneye ku cezayên wan zarokan ji zîndanîkirinê ji bo karpêkirin an serbestberdana bi şert veguherînin.

Di yasayên Tirkiyeyê de pênaseyeke gelek fireh ji bo peyv û têgeha 'terorê' heye. Zarokên ku kevir davêjin polîsan an jî sloganên piştgiriya PKK'ê dibêjin, wek endamên wê partiya qedexekirî tên darezandin. Herwiha veşartina ser û çavan jî di dema meş û xwenîşandana de, wek "propagandaya ji bo rêxistina terorê tê hesibandin."

Rêxistinên sivîl û xizmên girtiyan kampayayekî li dijî girtin û cezakirina zarokan destpêkirine. Ew bi çalakiyên protestoyî biryara dadgehên dewleta Tirk û siyaseta cezakirina zarokan şermezar dikin.

Parlementera Partiya Civaka Demokratîk (DTP) Sevahîr Bayınder cezakirina wan zarokan weke siyaseteke dewleta Tirk dibîne û dibêje armanca ew e ku malbatên Kurd bitirsîne.

Destpêka vê salê Bayındır projeyeke pêşkêşî parlamena Tirkiyeyê kiribû, ku zarok li dijî yasaya dijî terorê bên parastin, lê ji aliyê partiyên din ve tu piştgirî ji wê projeyê re nehat kirin.

### Enstîtuya Kurdî ya Amedê:

# Nivîskarên biçin TRT 6'ê, bila dûrî me bin

Evdila Koçer

**Amed -** Rêvebirê Enstîtuya Kurdî ya Amedê Feratê Dengizî, di derbarê 'rewşa kurdî ya Amedê, çalakiyên bi tirkî, hebûna TRT 6 û gelek tiştên din' bersiva çend pirsên Rûdawê da. Feratê Dengizî li gel ku bahsa xebatên enstituyê dike, dibêje ew bi nivîskarên Kurd yên ku tevlî bernameyên TRT 6'ê bibin re têkliyên xwe qutdikin.

***Enstîtiya Kurdî ya Amedê bi çi karî re mijûl e?***

Enstîtuya Zimanê Kurdî ya Amedê di sala 2004'an de hatiye avakirin. Pêşî bêhtir giraniya xebatên wê li ser ziman bû. Di vî warî de çend caran bi alîkariya Şaredariya Bajarê Mezin li ser ziman konferans lidarxist. Di wan salan de bultenek bi navê "Ziman" (du hejmar) derxist. Dîsa bi Kurmancî pirtûka, "Hunera Axaftina Xweş û Nivîsandina Rind" ya Mamoste û Nivîskar Ayhan Meretowar weşand. Di van salên dawîn de; enstîtu û Kurdî-Der di bin banê TZP-Kurdî de şêweyeke nû girtin. Navê Enstîtuyê bû Enstîtuya Kurdî ya Amedê û berê xebatên xwe da ser wêje, huner û çanda kurdî. Di vî warî de pirtûkên Gramera Kurdî jî di nav de, nêzî bîst pirtûkî weşand. Dîsa govara wêje, çand û hunerê, Govara W'yê ji aliyê komekî nivîskar ve li Amedê her ji du mehan carekê dihate derxistin. Em bi sê beşan xebatê xwe dimeşînin; werger, weşan û redaksiyon. Xebatên li



ser Kurmanckî û Soranî jî hene.

***Li Amedê û li Bakur gelek panel û çalakiyên çandî bi organîzasyona derdorên welatparêz mixabin hê jî bi tirkî têne kirin. Gelo ev tişteke normal e?***

Normal e, lewra jehra bi hezar salan bi carekê dernayê. Pedogojî û derûniya bindestan, giyaniya zora serdest ne hesan e. Ku çermê mejî hatibe xeritandin, vejîna giyanî malkambax e, sebr û zaneyî divê. Lewra ziman giyan e… Ne normal e, 'lewra gihayê hewşê tahl e.' Car carina teqîn ji deriyê me tê. Têkiliyên heja jî hene.

***Çawa ku em ji van çalakiyan fêm dikin qîmeta nivîskarên kurdînûs hê jî wekî 'giyayê hewşê' ye. Gelo Enstîtûya Amedê çi dike heta ku nivîskarên kurdînûs li vê hewşê dîsa 'şêrîn' bibin?***

'Şêrînî' biha ye. Kedê û bikêrhatinê dixwaze. Di vî warî de hewldanên me hene. Xebatên hevpar û li gorî derfetan qedirzaneyiyek nefsbiçûkî heye.

***Heger sibe dewlet di dibistanan de bi fermî destûra kurdî bide, gelo ji vê yekê re haziriyên we çi ne?***

Bernameyên me hene, mamosteyên me hene, materyalên me yên perwerdehiyê hene ligel kêmasiyan. Di rewşeke wisa de, demek kin gelek çareseriyan derdixe holê.

***Gelek caran li bakur bo zimanê kurdî çalakî û kampanya têne lidarxistin. Gelo tesîreke van çalakiyan li ser civakê heye, an gelo ev çalakî bi tenê sloganîk û sembolîk in?***

Ez wisa bibêjim; çar sal berê li kolanên Amedê û li saziyan dengê kurdî kêm dihat guhên min, lê îro ez bêhtir kurdî dibihîsim û hewldanek berbiçav heye. Wexta ku em dozê li hev bikin çûye, pêş naxe; em dozê li xwe bikin. Em herin ber eyneyê! Kêmasî hene lê hewldan jî berbiçav in… Xweşbîn im.

***Heger sibe TRT 6 li deriyê we bixe û bixwaze di derbarê kar û barên we de bernameyekê çêke, gelo hûn ê çi reaksîyonê nîşan bidin?***

Wisa nabe. Bê îradeyê, kar nabe. Bê nasîn, bê pergal, berî ku mirov li deriyê xelkê xe, divê mirov wan nas bike, li hember wan rêzdar be. Gelo di fermîtiya dewletê de çi guherî? Ji bo ew qasî tehdeyî, zordarî, înkarî - eeger biratî be-, kanî rêzdarî û lêborînxwestin? Ez ê tim bibêjim,'ez ê qir bikim' û were em bilîzin. Bi qewlê Ereban 'Xoş bazra!' Rûmet esas e. Yanî biratî û aştî lazim e, pêşiyê em wê bibînin. Ji bo danasîna govara Wyê li derê me dan û me got; Na! Helwesta me heman helwest e.

***Bi derketina TRT 6'ê re, bi erênî an jî neyînî gelek nîqaşên cihê derketin holê. Heger endamekî we an jî nivîskarekî ji Amedê tevlî bernameyên TRT 6'ê bibe…***

Emê têkiliya xwe ya di warê Kurdewarî de jê bibirin. Piştî ewqas sal û zelûlî, ma 'îman'pere ye? Çima em li hev û keysê digerin? Te pirsîbû "gunehê kurdînûs çiye?" Ma kurdînûs wiha bike, çima gazinan dike!

***Ji ber ku Enstîtuya we li Amedê li paytexta Kurdan e, lewma girîngiya kar û barên we jî di çavên civakê de bêtir e. Gelo heta niha we piştgiriyeke maddî ji şaredarî an jî sazî û derdorên Kurdan wergirtine?***

Piştgiriya maddî na, lê em kar dixwazin. Karê ku wê biyanî bi giranî bikin, em ê heman karî bi erzanî û bi hejayî bikin. Piştgiriya ku, karê xwe didin me, hene. Mînak em wergera ji tirkî ya malpera Şaredarya Bajarê Mezin ya Amedê dikin; werdigerînin kurmancî û îngilîzî.

# ‘Bila Mukiryan bibe parêzgeh’

**Sabir Qadirî**

**Mahabad (Rûdaw)** - Jibo çêkirina parêzgehek nû ya Kurdî bi navê Mukiryanê, nûnerê bajêrê Mahabadê li parlemêna Îranê pêşniyaza cudabûna Başûrê Parêzgeha Urmiyê (Azerbaycana Rojava) dike, lê Kurd û Azeriyên Parêzgeha Urmiyê li dijî wê pêşniyazê ne.

Hefteya borî jiber wê hindê ku hemwilatiyên Kurd ji temamiya postên idarî di parêzgeha Urmiyê da hatine bêbeşkirin û dûrxistin, di demekê da ku ji sedî 50ê şêniyên wê Kurd in, Celal Mehmûd Zade pêşniyazekî bo cudakirina başûrê parêzgeha Urmiyê û kombûna bi çend bajarên din yên Rojhilatê Kurdistanê bi armanca avakirina parêzgeheke nû bi navê Mukiryanê anî rojeva parlemêna Îranê.

Ostana Azerbaycana Rojava, ku bi Kurdî jêra Urmiye tê gotin, dikeve bakurê Rojavayê Îranê û ligor serjimêriya sala 2005an hejmara rûniştvanên wê nêzî 3 milyon kesane, rûbera wê ji 37 kilometra çargoşe ye. Pirraniya rûniştvanên wê ji aliyê etnikî ve ji Kurd û Azeriyan pêk tê.

Parêzgeha ku nûnerê bajêrê Mahabadê pêşniyaz kiriye ji bajên Bokan, Piranşar, Nexede, Mahabad, Serdeşt, Sayin Qela û Tikabê pêk tê, lê Kurd û Azeriyên parêzgeha Urmiyê bi vê pêşniyazê hevdeng ninin. Lewra Kurd bawer in bi wê pêşniyazê beşekî ji xaka Kurdistanê dikeve dest Azeriyan, di heman demê da ji Azerî wê hewlê weke dabirina beşek ji welatê xwe bi destê Kurdan dizanin. Hêjayî gotinêye ku Azerî bajêrên Nexede û Urmiyê ji beşekî ji axa xwe dizanin û di serdema Komara Demokratik a Kurdistan li Mahabadê ji nakokî bi Komara Azerbaycanê li ser Urmiyê hebûn.




Nûnerê Mahabadê li parlemêna Îranê Celal Mehmûd Zade di daxuyaniya xwe de jibo Rûdawê sedema derxistina wê pêşniyazê wiha anî ziman: "Ji nivî zêdetir rûniştvanên parêzgeha Urmiyê Kurd in. Lê heta niha tu post û berpirsyarî nedane dest Kurdên wê parêzgehê. Jiber wê ji lazime Kurd fikra cudakirina başûrê wê parêzgehê ku rûniştvanên wê bi temamî ji Kurdan pêk tê. Da Kurd ji wê bêbextiyê rizgar bibin me baş zanî ku birukeya parêzgeheki nû bi navê Mukiryanê ku ji bajêrên Azerbaycana Rojava pêk tê, bixin berdem parlemanê."

Pêşniyara navbirî bû sedema dengvedanek mezin dinava parlemênta Îranê da, heta radeyekî ku nûnerê Azeriyan di parlemanê da êriş bir ser Mehmûd Zade. Celal di wê derbarê da got:

"Dema min ew pêşniyaz kir, beşek ji parlementeran nerazî bûna xwe diyar kir û xwestin serokê parlemanê min bêdeng bike. Hinek ji wan nûneran êriş anin ser min, lê piştre nûnerên Sunnî, Belûç û Lor bûn navbenkar û rewş ber bi aramiyê birin."

Nûnerê bajêrê Mahabadê bawere bi cibicikirina wê pêşniyazê Kurdên Rojhilatê Kurdistanê ji destê wan hemû cudakariyên ku di navçeyê da rastî wan tê rizgar dibin: "Li gor baweriya min, ew pêşniyaz dikare beşekî ji wê piroseyê be ku bi cibicibûna wê dibe sedemê rizgarkirina Kurdan ji cudakariyên etnikî û olî ku li hember wan tên birêvebirin."

Hin Kurd bawer dikin ku niha nivê navenda bajêrê Urmiyê di destê Kurdan da ye. Ger pêşniyazeke wiha bê erêkirin, êdî ji wî bajêrî tên veqetandin, ew ji ne di berjewendiya Kurdan de ye.

Pêşniyaza nûnerê bajêrê Mahabadê ne tenê ji aliyê hevwelatiyên Kurd ve hat ecibandin, ev bû sedemê nerazîbûna Kurd û Azeriyan ji. Herwiha hiç hizbekî Rojhilatê Kurdistanê ji piştgirî nedan wê pêşniyazê.

Endamê Komiteya navendiya Komeleya Şoreşgera Zehmetkêşên Kurdistanê, Aram Muderisî hewlên wiha wek 'xeter' binavkir: "Jiber têkelbûna nijadî ya Kurd û Azeriyan ku di navçeyê da heye, karên wiha pir xeterin û dibin sedema çêbûna girjî û nerehetyan di navçeyê da. Dewlet berdewama hewla perçekirina Kurdistanê dide. Yek ji hewlên wan çêkirina parêzgeheke binavê Kurdistanê li Sineyê bû ku biser ketin ji. Jiber wê ji çêkirina parêzgeheke nû bi navê Mukiryanê hewlek nû jibo perçekirina xaka Kurdistanê ye."

## Li Sûriyê girtina Kurdan berdewam e

**Şam (Rûdaw)** - Li gorî daxuyaniyeke Rêxistina Mafên Mirovan li Sûriyeyê (MAF) girtina Kurdan berdewam e. Di rojên dawîn de ji sê xortên Kurd li Qamişloyê hatine girtin. Li gor agahiyan navên wan ev in: Mihemed Seîd Sebrî (35), Fehed Ehmed Ebbas (28 sal), Emîr Faruq Salih (28). MAF di daxuyaniya xwe de eşkere dike ku li gor merivên girtiyan dibêjin, her sê xortên navbirî ji aliyê hêzên ewlekariya dewleta Sûriyê ve hatine girtin, lê belê sedemên girtina wan û çarenûsa wan ne diyar e. Di demên dawîn de, rêjîma Sûrî girtin û zindanîkirina Kurdan pirtir kiriye û ji aliyekê din ve ji kuştina leşkerên Kurd di nêv artêşa Sûriyê de guman û tirseke mezin xistiye nav Kurdan .

Di derbarê girtina Kurdan de, rêxistina Kurdî ya berevanîkirina mafên mirovan û azadiyên giştî li Sûriyê DAD eşkere kir ku dadgeha leşkerî a bajêrê Qamişlo roja 12ê vê mehê biryara zindanîkirina 7 hevwelatiyên Kurd bo du mehan derxist. Navê her heft kesan ev in: Ebdulhemîd Ehmed Erebo, Ehmed Mihemed Beşîr Erebo, Ferhad Ebdilqadir Erebo, Ehmed Îzedîn Erebo, Cihad Ebdilqadir Erebo, Ehmed Osman Erebo, Kamîran Sedûn Erebo.

Tê zanîn ku ev kes ji bajarokê Dirbêsiyê ne û merivên hev in, û dadgehê ew bi tuhmeta gurkirina nakokiyên mezhepî û têkdana rewşa aramiyê, gunehbar kirine.

Di daxuyaniyeke din ya rêxistina Kurdî DAD'ê de hat eşkerekirin ku 16 hevwelatiyên Kurd li pêşiya dadgeha leşkerî a Qamişlo hatine dadgehkirin. Li gor DAD'ê navê wan wiha ye: Silêman Ebdilmecîd Oso, Hevend Salih Husên, Îwan Eziz Ebdulla, Mesûd Ferhan Biro, Dilxwaz Mehmûd Derwê, Reşo Mihemed Şerîf Mixan, Bendewar Behrî Şêxê, Dilxwaz Zeynulabidin Mihemed, Salar Berzan Ebdilrehman, Riyad Kemal Hoban, Eymen Salih Mehmûd, Ebdilkerîm Mihemed Ebdo, Deham Hesen Şêxê, Reşîd Remezan Osman, Siwar Behrî Şêxê.

# “Xwezî ez qet ji dayik nebûma”

**Köln (Rûdaw)** - Li Almanyayê bi hezaran mexdûrên işkenceyê dijîn. Piraniya wan kesan li welatê xwe rastî işkence û miameleyên xirab hatine. Beyan kurekî 25 salî ye ku daxwaza mafê penaberiyê kiriye. Ew dixwazê li Almanyayê dest bi jiyaneke nû bikê, lê hîn jî xewnên xirab wî rihet nahêlin. Wekî din ew li dijî burokrasiyê liberxwe didê, ji ber ku belgeyên ku işkenceya li wî hatine kirin ispat bike.

Bi gotina "ew wek guran bûn" Beyan dest bi axaftina xwe dikê. 'Ew' yanî ew kesên ku kum li serê wan bû, yên xwedî hêz, işkencekarên istixbarata leşkerî ya Suriyê li Şamê. Beyan dibêjê ku wî di biranîna salvegera "Qetliama Qamişloyê de çend helbest xwendine. Helbestên siyasî û rexnegir, ku ji bo milyon û nîv Kurdên li Suriyê wekhevî dixwestin.

**Bûyerên dilşewat**

Ev du salin ku Beyan tevî hevjîn û dû zarokên xwe li Almanyayê dijî. Zaroka wî ya biçûk tenê şeş mehî ye. Du brayên Beyan bi işkenceyê hatine kuştin. Xwişka wî ji piştî kuştina brayên xwe nema kariye bijî û wê jî xwe kuştiye. Bi heman awayî bavê Beyan jî ku jiyan ji bo wî piştî mirina zarokên wî bêwate buye dayika Beyan bi êşa herdû lawên wê bi tenê hiştiye û xwe kuştiye. Ew lawên ku ji bo Kurdistanekê têkoşiyane, ji bo hemû deman wenda bûne.

'Saziya Koçberî û Penaberiyê' serlêdana Beyan bo mafê penaberiyê di sala 2007an de redkir. 'Navenda tedawîkirina mexdûrên işkenceyê li Berlinê' (bzfo) raporekî li ser Beyan amade kiriye û niha jî tê çaverêkirin kû daxwaza xortê Kurd ji nû ve bê nirxandin. Di derbarê serpêhatiyên wî kêm delîl di destê Beyan de hene. Tenê gotinên wî hene ku burokratan pê iqna bikê, ku ew hatiye işkencekirin. Ji bo psîkoterapista 'Navenda Tedawîkirina Mexdûrên Îşkenceyê li Berlinê' Gisela Scheef-Maier ev dilemayeke rojane ye: "Kesên trawmatîzekirî tenê karin di rewşeke ewle û parastî de rihet bibin. Lê heta rewş û statuya wan ya penaberiyê eşkere nebê, ew hertim di tirs û fikaran de ne ku ji bo welatê ku jê reviyane bên şandin. Ev rewşa nediyar jî bo tendurustî û tedawîkirina wan kesan gelek zahmet e."



Li gor Scheef-Maier kesên ku demekî dirêj di girtîgehê de mane û hatine işkencekirin, bawerîya wan bi mirovan dişkê û xwe paşve dikşînin û pasîf dibin. Bêdengmana mexdûran tê fêmkirin, lê di pêvajoya doza penaberiyê karekî kambax e, ji ber kû nikarin serpêhatiyên xwe bilêv bikin û bêjin çi hatiye serê wan: "Ji ber vê yekê gelek caran biryarên xelet tên dayîn."

***Mafê penaberiyê nîne"**

Berî 12 salan 'peymana dijî işkenceyê' ya Netewên Yekgirtî ketiye rojevê. Lê alîkariya ji bo mexdûrên işkenceyê çiqasî tê kirin? Di sala 2007an de ji 750 serlêdanên ji bo mafê penaberiyê ku ji Sûriyê hatine, tenê ji sedî didoyê wan hatine pejirandin. Li gor raporta 'Saziya Koçberî û Penaberiyê' serlêdanên ji sedî 56an hatine redkirin, ji sedî 11 ji bo demekê mafê sekna Almanyayê girtine.

Di hevpeyvîneke malpera almanî Spiegel Online de Berdevkê Wezareta Karê Hundir yê Almanyayê Christoph Hübner, didê xwiyakirin ku Sûriye yek ji wan welatan e ku gelek kes jê nefermî derbasî Almanyayê dibin: "Vê gavê di derdora 6600 hevwelatiyên Sûriyê nefermî li Almanyayê dijîn."

Li gor Hübner ew peymana ku di meha Rêbendana 2009an di navbera Almanya û Sûriyê hatiye îmzekirin vê rewşê li ber çavan digrê û dibêjê ku bandora vê peymanê bi tu awayî li ser mafê penaberiyê nabê. Li gor berdevk penaberên ku li Suriyê jiyana wan di bin xeterê de ye, wê li Almanyayê mafê panaberiyê wergirin.

Rêvebirê 'Saziya Penaberan ya Schleswig-Holsteinê Martin Link bi awayekî din li mijarê dinêrê: "Eger penaber nikaribin ispat bikin ku ew ji ber xebata siyasî li welatê xwe di bin zextê de ne, tu derfeta wan jî bo wergirtina mafê penaberiyê ninê."

Ji ber ku piraniya caran penaber ne di reyên fermî û bi pasaportên nerast û bi reya şebekeyan ji welatên xwe derdikevin, zahmet e ku karibin ispatên materyelê ku di prosesa wergirtina mafê penaberiyê giring in pêşkeşî dadgehan bikin.

Li ser pirsa 'ka Beyan jî karê xwe yê siyasî poşman ê', ew wiha bersiv didê: "Ez li hertiştî poşmanim. Ji xwendina xwe ya helbestan, ji beşdarbûna xwe ya çalakiyan, lê herî zedê ez jî jidayikbûna xwe poşman im."

# Xezala Ermenistanê


Mehmet Aktaş

Berî çend rojan, ez bi Apê Karlen re axifîm. Wî ji erd û ezman hêsir dibarandin. Bi navê Sîmê destpêdikir û bi navê wê gotinên xwe diqedandin. Xwedêgiravî ew bi min re diaxifî, lêbelê li ser xeta telefonê ji ew ligel jina xwe ya "dinya û axretê" bû. Min zanîbû ku vê gavê, heft qereçî çokên xwe bidin erdê û li daholan bixinin, Kawis Axa û Şero yê Biro jî gora xwe rabin, dest bavêjin guhên xwe û ji wî re stranan bibêjin, disa jî wê feyda wê tunebe û tu deng naçe Apê Karlen. Ew bi heykelê Mistefa Kemal, Hafiz Esed û Saddam re rû bi rû bimîne, disa jî li ber çavên wî tenê wêneyên "Meta Sîmê" hebûn. Li vê dinyaya derewîn, xem û xeyalên wî tenê Sîma Semed ya bejinzirav dixemilandin. Diyar bû êdî kalemêrê evîndar di nav dinyayeke yekdengî û yekrengî de dijiya. Dema min ew guhdar dikir, min jî xwe re digot: "Apê Karlen, di heftê saliya xwe de, bi Xwedê re, ketiye nav bazariyê. Dixwaze careke din Meta Sîmê ji gorê derxîne û têkeve paşila wê!" Ez li ser xeta telefonê bê çare mabûm. Ji neçariyê min xwe avêt ber bextê evîndara wî. Min got: "Apê Karlen, tê bira te gava ku ez yekem car hatim mala we. Êvarê Meta Sîmê ji me re goştê kelandî çêkir." Vê yekê zû bala wî kişand. Wekî ku ew ji nişkê ve ji xewneke dirêj şiyar bibe û bi min re nû dest bi axavtinê bike. Wî "hûrgilî" saet bi saet behsa wê hevdîtina me kir . Di cih de em nêzî hev bûn. Bi hevre em çûn destpêka salên 90an, piştî ketina Sovyetê, rojên tarî û wahşî. Helbet, naveroka sohbeta me tenê Sîma Semed bû.

Ez li vir jî we re qala lehengekî sureal ji yên di romanên Jorge Saramago an jî Marquez nakim. Ez qala, mirovekî Kurd ê evîndar dikim. Serokê Nivîskarên Kurd yên Ermenistanê Karlanê Çaçanê, yê ku li kevne Sovyetê, li Ermenistanê, di ronesansa Kurdî de, roleke gelek giring list. Herwiha ew weke diroknas, helbestvan û nivîskar xwedî gelek berhemên giranbiha ye. Di pêvajoya têkçûna Sovyetê de, ew li ser piyên xwe ma û jî bo doza miletê Kurd tim di nav tevgerê de bû. Lê qeda li dinyayê bikeve. Niha wî Sîma xwe wendakiriye. Ew êdî bê per û bask maye. Destpêka zivistana derbasbûyî ez, li Ermenistanê, li gundê Cercerîse bûm. Gundê Karlenê Çaçanî û Sîma Semed lê hatine dinyayê. Cihê ew lê mezin bûne, çûne dibistanê û ji hevûdû hezkirine. Welat çiqas jî me dûr, ewqas jî nêzîk bû. Dinya sar, mij û dûman bû. Çiyayên Elegezê di bin kirasê xwe yê spî de wenda bibûn. Li ser goristana gund, berfek hûrik hûrik dibariya. Ji bo Kurdên Êzidî îro" roja Xêran" bû. Karlenê Çaçanî weke zarokekî sê mehî, li ser mezelê "kevaniya mala xwe" Sîmê digiriya. Min di jiyana xwe de pir mirovên xwedî êş, xwedî kul û keder dîtin. Bi gelek mêrên simbêl qeytan re rabûm û rûniştim. Lê tu kurê bavan bi dengekî bilind, wisa li hember min negiriya bû. Di nav hêsir û peyvên Apê Karlen de harmoniyek hebû. Wî digot: "Sîmê ez qurban, nivîskara min, bermaliya dilê min, te ez hiştim û tu çûyî ku? Porsorê, cihê te sar e. Ez qurbana wan tiliyên te yên zirav bim. Ez soz didim te ku ezê kitêba te xelas bikim. Ezê li Ewrupayê, li Mokovayê çapbikim. Apê Karlen di navbera "girî û gilî" yên xwe de gazî dengbêja şin û şahiyan Gogê dikir: "Gogê, porkurê, were ji Sîmê re bêje." Hîn gotinên Gogê xelas nedibûn, Karlenê Çaçanî careke din destpêdikir: "Sîmê qîza qehremanan, nivîskara miletê xwe, berdevka cemaeta xwe, te çima sebir nekir, te ez berdam û tu çûyî ku?"

Belê, 18 sal in ku ez Karlenê Çaçanî nas dikim. Kijan cara ez diçûm Ermenistanê, ez dibûm mêvanê wan. Bi dehan car, min ji destên Meta Sîmê xwarin xwariye. Li dinyaya din, Xwedê cihê wê bike bihuşt. Hîna berî ku sînor di nav me de rabin, min dengê wê nas dikir. Rehmetiya diya min, di ciwantiya xwe de, weke gelek jinên herêma Serhedê herdem li bernameya wê ya radyo ya Êrîvanê, ya bi navê "Kulfeta Kurd" guhdarî dikir. Û bala xwe dida ser tendirustiya xwişk û birayên min. Bavê Sîma Semed, Siyabend, xwedî "nîşana Sovyetê" bû. Di şerê cîhanê yê duyem de, li hember Naziyan, di şerên giran de qehremanî kiribû. Ji ber vê yekê, ew Bolşevikekî payebilind bû. Lê, di jiyana xwe de, Sîma Semed ne di bin siya bavê xwe, ne jî ya mêrê xwe de mabû. Di bêdengiyê de, ew bû nivîskar, dayik û evîndareke baş. Wê jî çil salî zêdetir, di radyoya Êrîvanê de xizmeta zimanê Kurdî kir. Di ber re jî nivîsand. Kurteçîrokên wê di nav edebiyata Kurdên Sovyetê de xwedî cihekî taybet digrin. Bi çavdêriyên xwe û zimanê xwe, Sîma Semed li ser riya mamoste yê xwe Erebê Şemo meşiya. Çendek ji kurteçîrokên wê, di nav weşanên Nûdemê de, bi navê "Xezal" derket in. Karlanê Çaçanî berî heft mehan li ser gora bermaliya xwe soz da me ku, wê di demeke kin de, kurteçîrokên herî dawî yên evîndara xwe berhev bike û bide çapkirin. Heta wî çaxî, ez hêvî dikim ku ez pirtûka Sîma Semed ya bi navê "Xezal" peyda bikim û bixwînim. Ez bawerdikim ku piştî vê yekê, hûnê kula dilê Karlanê Çaçanî baştir nasbikin.

# ‘Nebûna lobiya Kurd li Almanya kêmasiya me ye’

**Îsmet Sîwereklî**

**Berlîn (Rûdaw)** - Hoşeng Sebrî, Kurdeke dermannas e û li paytextê Almanyayê dijî. Kurê wêjevanê navdar Osman Sebrî ye. Misyona bavê wî, ew mecbûr kiriye ku bi doza Kurdan re mijûl bibe. Wî ji xwe re ev kiriy wezîfe, ku li misyona bavê xwe xwedî derkeve. Di derbarê xebatên xwe yên siyasî de, Hoşeng Sebrî pirsên Rûdawê bersivandin.


(Wêne: Rûdaw)

***Demeke dirêj e ku hûn li diyasporayê dijîn û ji bo rexistina Kurdên diyasporayê xebat dikin. Rewşa Kurdên diyasporayê li Almanyayê çawaye?***

Perçebûna Kurdistanê li diyasporayê, di nav Kurdên koçber de, xwe bi hemû şeklî nîşan dide. Ev rewşa Kurdan min pir xemgîn dike û ji aliyê din de mîsyona bavê min, min mecbûr dike ku ji bo welat û gelê xwe xebatê bikim. Di çarçova îmkanên xwe yên aborî û siyasî de, ji bo doza Kurd di nav xebatê de me. Ev xebata min ji bo Kurdên li diyasporayê dijîne ku wek mînak li Almanyayê xwe birêxistin bikin û bi yek dengî li Almanyayê Kurdên koçber temsîl bikin.

Bi taybetî bajarê Berlînê ku di siyaseta Ewrupayê de cihekî navendî digre. Li vî bajarî nêzîkî 60 hezar Kurd dijîn û di nav wan de gelek kesên rewşenbîr jî hene. Ev rewşenbîr ji bo gelê xwe xebatê nakin. Ez dikarim bêjim ku ji sedî nod ji van rewşenbîran ji xebatên xwe yên siyasî dûr ketine û ketine nav berjewendiyên xwe yên şexsî. Ev kêmasiyeke me Kurdan e. Ez wê yekê nabêjim ku divê ew pereyan qezenc nekin, bila qezenc bikin û dewlemend bin. Lêbelê gerek e mirov li doza xwe ya millî jî xwedî derkeve. Ji bo welatê xwe xebatên siyasî bimeşînin û ji bo rêxistinbûna gelê xwe di nav tevgerê de bin. Kurdên li Almanyayê dijîn, xebatên xwe yên siyasî, çandî û aborî dimeşînin. Carcaran di nav van çalakiyan de cih digrin, lêbelê ev yeka têr nake.

***Çima têr nake û sedemên vê yekê çine?***

Kar û xebat pir in. Eger ev xebat neyêne birêxistinkirin, wê serkeftin jî pêk neyên. Ji her seriyekî dengek derdikeve. Ji ber vê yekê, gelê Alman û saziyên wan me zêde ciddî nagirin. Min berê jî gotibû ku çarperçebûna Kurdan li Almanyayê di nav Kurdan de, bi her aliyê xwe ve dide nîşanan ku di nav Kurdan de yekîtî tuneye. Gelê Kurd yekîtiyê dixwaze. Tevgerên Kurd jî, di vê rê yê de astengiyan derdixînin. Her tevgereke Kurd dixwaze ku rêxistin di bin kontrola wê de be.

***Li Berlînê civata Kurd heye gelo?***

Li Berlînê, bi navê “Civata Kurd” saziyekî heye. Ev sazî nûneriyetiya Kurdên li Berlînê nake. Berî çend salan, Kurdên Berlînê xwestin saziyeke wisa çêbikin. Di wê daxwaza xwe de biserketin. Dawî, hevalên PKK ketin nav û xirab kirin, bû du perçe, Civata Kurd û Civata Demokratîk ya Kurd. Îro li Berlînê bi navê Civata Kurd saziyekî heye. Lêbelê hemû Kurdên Berlînê temsîl nake. Ev ji bo me Kurdan kêmasiyek e. Divê saziyeke wisa karibe xwe di ser partiyên Kurdan re bige û hemû hêzên Kurd di nav de cih bigrin. Wê demê mirov nikare bibêje, ‘ev serbana rêxistina Kurdan e.’ Kurdên Berlînê, dixwestin Civata Kurd li Berlînê bi hemû hêzên Kurd ve bê sazkirin û bibe mînakeke bajarên din yên Ewrûpayê. Mixabin çênebû û em biserneketin. Ev kêmasî zirarê dide doza Kurd û astengî li ber çêbûna Lobîya Kurd li Ewrupayê derdixîne.

***Rewşa lobîya Kurdên li Almanyayê çawaye?***

Lobîya Kurdan li Almanyayê tuneye. Kesên ku eslê wan Kurd in û di nav siyaseta Almanyayê de xebatê dikin hene. Li Berlînê, di Partiya Çep de Giyasettin Sayan û Hêlîn Baba hene. Li navçeyên din jî, di nav partiyên Alman de şexsiyetên Kurd hene. Divê mirov van bîne cem hev û ji bo doza Kurd bi hevre xebatê bike. Li Almanyayê nifşekî nû çêdibe. Divê Kurd ji vî nifşî sûdê wergirin. Li wan xwedî derkevin û ji bo perwerdebûna wan alîkariyê bikin. Da ku di nav siyaseta Almanyayê de cihên xwe bigrin. Dema ku Kurdan ev kir, wê demê Lobîya Kurdan jî wê çêbibe. Dema ku ev lobî were çêkirin, divê ji tevgerên Kurdan bêhtir karibin xizmeta doza kurdan bikin.

***Berî çend salan, we ji bo xwendekarên Kurd yên ku dixwestin di zanîngehan de bixwînin, bûrs peyda dikirin. Ji kerema xwe re, hûn dikanin agahiyên berfirehtir bidin?***

Hûn dizanin ku ez dermannas im. Mi dixwest bi imakanên xwe yên aborî xwendekarên Kurdên ku li Sûriyê dijîn û dixwestin li zanîngehên Almanyayê bixwînin û îmakanên wan tunebin, bi wan re alîkariyeke aborî bikim.

***We çima ev xebata xwe pêşve nebir û we nekir wekî waqifekê?***

Bi rastî, wê demê fikireke mina wisa tune bû. Ev fikir ji bo waqifekê pir baş û pîroz e. Li Almanyayê, bi sed hezaran Kurd dijîn. Di nav wan de kesên ku aboriya wan başe, hene û gelekin. Heta îro, di nav me Kurdan de, projeyeke wisa nehatiy çêkirin. Kêmasî ya me Kurdan e. Kesê ku xwedî piorjeyeke wisa be, ez ji bo vê yekê herdem ama de me ku alîkariyê bikim.

***Hûn, di nav siyaseta Almanan de kesên navdar mîna Otto Schily nasdikin û danûstandinê we hene. Dema Abdullah Öcalan hat Îtalyayê, Otto Schily wezîrê karê hundir bû. Schily, ji bo doza Kurdan çi difikre?***

Dema Öcalan hat Îtalyayê, bi navê Kurdan, me bi wî re hevd îtinekî çêkir. Di vê hevdîtinê de, me jê re got; divê Almanyayê bi dewleta Tirk re, dijî Kurdan, alîkariyê neke û ji bo çaresekirina doza Kurdan alîkariyê bike. Wî ew qebûl nekir û tevgera Kurdan wek ‘’teror” binavkir. Em jî dijî vê yekê derketin. Ew nerîna wî, nerîna dewleta Alman bû.

***Di demên dawîn de, danûstandinên Almanyayê yên siyasî û aborî bi herêma Kurdistanê re hene.***

Almanya, li aliyekî Kurdan wek ‘’terorîst” dibîne û li aliyê din jî danûstandinên xwe yên aborî û siyasî bi herêma Kurdistanê re pêşve dibe. Di dema dawiyê de, ev danûstandin hatine merheleyeke baş.

***Hoşeng Sebrî kî ye?***

Hoşeng Sebrî di sala 1944 de li Şamê ji dayik buye. Kurê siyasetmedar û helbestvanê navdar Osman Sebrî ye. Zarokatiya wî li Cizîrê û Şamê derbas bû ye. Bavê wî, dema şerê Şêx Seîd çar salan di girtîgehên Tirkan de maye. Paşê zindanê, ew koçî Sûriyê kirin.

Hoşeng Sebrî, xwendina xwe ya lîse û zanîngehê li Şamê, beşa Felsefe û Sosyolojî temam kiriye. Tunebûna hemwelatî ya wî ya Sûriyê, rê nedida ku li wir kar bike û mecbûr ma ku di sala 1970 de ji Sûriyê koç bike. Wê salê bi qaçaxî tê Almanyayê û serî li penaberiyê dide. Li zanîngeha “azad” ya Berlînê, beşa zimanê Almanî û Îngilîzî dixwîne u di wê zanîngehê de beşa dermannasiyê diqedîne. Karê dermannasiyê heta îro didomîne.

# Kurd û Dîasporaya Ewrûpayê


Nebî Kesen

Dîroka dîasporaya Kurd bi sedê salan dirêj dibe. Sedemên wê yên siyasî, civakî û aborî pir in û nikarin li vir yek bi yek bên gotin. Dîaspora ya Kurd ya herî mezin li Ewrûpa ye. Em dikarin li ser çend xalên girêdayî vê dîasporayê bisekinin.

Dîaspora, ji bo Kurdan çiqas rastiyeke sedsalan be jî, Kurd bi xwe hîn ji zanayîbûna vê mijarê dûr in. Hinek lêkolîn li ser dîaspora Kurd hatine çapkirin. Weke mînak; li dewletên wekî Almanya û Swêd, nivîs û pirtûkên girêdayî vê mijarê derketine. Lê xwediyên van lêkolînan bi piranî kesên biyanî ne. Ev yek tê wê wateyê ku Kurd li ser rewşa xwe ya dîasporayê nasekinin.

Wek tê zanîn, dîasporaya Kurd di 30 salên dawî de, li Ewrûpayê gelekî zêde bû. Di vê pêvajoyê de çend tiştên balkêş derketin holê:

- Di heman demê de, ku koçberiya Kurdan gihişte asteke bilind, tevgera Kurdan ya siyasî jî, li Ewrûpayê geş bû. Bi deh hezaran Kurdên siyasî ber bi Ewrûpayê de derdiber bûn û nema vegeriyan welêt. Bi saya van Kurdan, civata Kurd ya li Ewrûpayê bû xwedî nasnameyeke netewî û siyasî. Rêxistinên siyasî û çandî di nav Kurdên Ewrûpayê de cih girtin û mezin bûn.
- Di dema koçberiya Kurdan ya Ewrûpayê de, pêvajoya globalîzmê (1990 î û bi vir de) destpêkir. Dinya sal bi sal biçûk bû. Kurdistan ji aliyê teknolojîk û hevgihiştinê de nêzîkî dîasporaya Kurd bû. Vê yekê roleke pozîtîv ya dualî lîst. Kurdên dîaspora pirtir ketin bin bandora pêvajoyên li Kurdistanê. Li aliyê din, civata Kurdistan li ser rewş û bûyerên Ewrûpayê û herêmên din agahdar bû.
- Li dîaspora, Kurdan gavên mezin avêtin. Ji aliyê zimên, çand, wêje û hunermendiyê de berhemên hêja derketin holê. Televizyoneke wek ROJ TV li dîasporayê pêkhat û li Bakurê Kurdistan û Tirkiyeyê bû alternatîfeke televizyonên Tirk. Pirsgirêka Kurd bi destê Kurdên dîasporayê baştir hat naskirin.
- Hinek Kurdên dîasporayê statûya xwe ya aborî guhertin. Niha bi deh hezaran Kurd li Ewrûpayê karmend in û rewşa wan ya aborî baş e. Hinek Kurdan li dewletên Ewrûpayê xwendina bilid xilaskirin û xwedî pîşe ne. Grûbeke ji wan wek akademîsyen û lêkolîner dixebin. Lê, ligor hejmara Kurdên Ewrûpayê ev pêşveçûn ne bes in. Divê Kurd rewşa xwe ya aborî û akademîk hîn jî pêşve bibin.
- Di salên dawiyê de hejmara Kurdên ku li ser Kurdan û Kurdistanê lêkolînên weke “dîplom” û “doktora” xwe dinivîsînin, pir bûye. Niha li her dewletên Ewrûpayê zanyarên Kurd hene. Xebat û hewldanên wan pêşve diçin. Mixabin, him civata Kurd him jî dezgehên Kurd yên li Ewrûpayê pirê caran van tiştan nabihîzin yan jî nizanin. Têkilî û hevkariyên zanyaran jî gelek kêm in.
- Di dîasporaya Ewrûpayî de Kurdên herderê gihiştin hev. Wek mînak; em Almanyayê bînin ber çavan. Li vir, Kurdên Başûr, Bakur, Rojhilat, Rojava, Kafkasya û Anatoliya Navîn (Tirkiyeyê) bihevre dijîn û hemû xwe wek endamên netewekî dibînin. Ango, têgihiştina netewî û yekîtiya Kurdan li vê diasporayê pêkhat. Ev rastî ji bo Kurdên, ku olên wan ji hev cuda ne jî wisa ye. Kurdên Misulman, Alewî û Ezîdî mînakyên vê rastiyê ne.

Pirsgirêk, kêmasî û astengiyên Kurdên dîasporayê li Ewrûpayê mijareke din e. Ew jî, divê di nivîsa pêş de bên gotin.

# Li Atînayê Nivîskarekî Kurd: Cemîl Turan


(Wêne: Rûdaw)

**Mihemed Berwarî**

**Atîna (Rûdaw)** - Nivîskarê Kurd Cemîl Turan ji mêjve li Yûnanîstanê dijî. Cemîl Turan ku heta niha gelek pirtûk û nivîsên wî bi Yûnanî hatine vergerandin û weşandin, li peytexta Yûnanîstanê tenê bi sere xwe wek konsolxana Kurd dixebite. Nivîskarê Kurd di derbarê jiyana xwe ya Atînayê û têkiliyên Kurd û Yunaniyan bersîva pirsên Rûdawê da.

***Birêz Turan, Li Yûnanîstanê gelek pirtûkên we yên ku hatine çapkirin. Elaqeya xwendekarên Yûnanî yên ku li ser pirtûkên we nîşan dide, behra wî ya motîveyên Kurdî çiye?***

Eleqeyeke mezin ji pirtûkên min re hene. Romanê min wek romanê klasîk yên Yûnanî tên şirovekirin. Dido Sotîru Nivîskarê ‘’Benden Selam Olsun Anadoluya / Silav Ji Anadolê re” ku par wefat kiribû, rojekî ji min re got: ‘’Cemîl ez di pirtûka xwe de negiriyam. Lê dema ku min pirtûka te xwend ez giriyam.” Ev ji bo min şeref û rûmeteke mezin bû. Ji ber ku ev ne bûyereka kesekiye, ez wek ferdek, nûneretiya netewa gelê Kurd dikim. Ev jî şanaziyeke mezin e ji bo min.

***Birêz Turan, wek em dizanin belgeyên Yûnan çawkaniyên yekem yên di derbarê dîroka Kurdan de ne. Hinekî dikarî bahsa vê yekê bikî?***

Leşker, fîlozof û nivîskar Şenofen di rojnivîsa xwe ya bi navê ‘Anabasîs‘ de behsa Kardukiyan yanê behsa Kurdan dike. Ev pirtûk di dibistanan de yek ji pirtûkên dersê ye. Di pirtûkên kevn yên Yûnaniyan de, di derbarê bavikên me da, tê gotin ku Kurd mêrxas, durist, cengawer û binamûs e.

***Ev têkilyên dîrokî di roja me ya îro de çawa bandor li ser têkilêyên Yûnan-Kurda kiriye?***

Li aliyekî din têkiliyên Yûnan-Tirkiyê heye. Di be ku mirov ev jî piçûk neke. Yanî, neyarên neyarê min dostê min e.Yanî nêzikatiyekî wiha hebû. Têkiliyên Yûnan-Tirkiyê pir girîng e. Di navbera Tirkiyê û Yûnanîstanê de pirsgirêkên girîng hene. Pirsgirêka Egeyê heye. Bûyera Qibrisê heye. Li Traqya pirsgirêka kêmnetên Musilmanên Tirk heye. Li Stenbolê bûyera patrîkxanê heye. Bûyera kêmnetewa Yûnan heye. Herwiha pirsgirêka Kurd heye û hîn jî germ e.

***Gelo baldariya bi Başûrê Kurdistanê re jî bi vê rengê ye?***

Di derbarê vê mijarê de fikrên cûda henin. Di dema şer de zehmetî pir bû. Di nava 11 rojên şer de, rojê ez beşdarê 5-6 bernameyên televîzyonê dibûm. Rewşekî wiha bû ku, min tenê ‘parastina şer’ dikir. Kurd jî di nav da, gelek kes êrîşên min dikir.

***Hûn behsa destekariya Amerîka ya li ser Îraqê dikin?***

Belê. Çepgirên Yûnanî û hin grûbên Kurd yên ku li dijî Amerîka ye, dibêjin Kurdên Başûr hevkarê Amerîka ne. Bi vê rengê rexneyên giran dikirin. Bi giştî Yûnanî dijî emperyalîzmê ne, yanî dij Amerîka ne. Partiya Komînîst û çepên hevgirtî jî di nav de ji sedî 60-sedî 70 gelê Yûnan dijî Amerîka ye. Ji ber vê di destpêkê de me pir zehmetî dît. Niha ev nêzikatî hêdî hêdî tê şikandin.

***Pêngaveke resmî yê Yûnanîstanê ji bo Kurdistanê heye?***

Belê. Mesela Yûnanîstan li Hewlêrê nûneretiya dîplomatîk vedike. Tam ne wek balyozxane ye. Ji ber ku wîze û tiştên din tûneye. Di warê dîplomasî, çandinî, leşkerî, aborî û çamepeniyê de biryar hatine girtin. Ez bawer im di nava çend mehan de wan tiştan din pêk bê. Pêşketinekî wiha heye.


(Wêne: Rûdaw)

***Ji Bilî We Di Çapemeniya Yûnanîstanê de Kurd Hene?***

Mixabin nîne. Min gelek xîret kir. Dema ku ez berpirsiyarê partiyê bûm û dema ku ez li Pasokê jî bûm min ji bo Partiya Sosyalîst ya Yûnanîstanê demeke dirêj kar kirim. Wezareta Derve burs da min. Piştî wî min her sal ji bo xwendinê çar xwendevan ji Kurdistana Tirkiyê anîn Yûnanîstanê. Lê gelek ji wan nexwendin.

## Çavderiyên Yaşar Kaya yên Başûrê Kurdistanê:

# Divê Kurd vegerin 'xaka pîroz'

**Nasredîn Akyol**
**Köln (Rûdaw)** - Piştî salên direj di nav siyaseta Kurdan li Bakurê Kurdistanê siyasetmedar Yaşar Kaya li Başûrê Kurdistanê bicih bû. Ji ber germa havina Hewlêrê ew ji bo demekî hatiye Almanyayê. Yaşar Kaya li mala xwe ya Kölnê, li ser jiyana Başûr, sedemên bicihbûna Hewlerê û xebatên xwe, bersiva pirsên Rûdawê da.

***Ev bûn çend sal ku hûn li Başûrê Kurdistanê bicih bûne. Hûn dikarin bahsa wê demê bikin. We çawa biryar girt?***

Piştî ku ez ji ber pirsgirêkên siyasî ji Tirkiyê derketim Ewrûpa û li wir bicih bûm, min nêrî ku tu xebatên siyasî li Ewûpayê nayên kirin. Min ji xwe pirsî, ez çi li vir dikim û çima naçim Kurdistanê? Dema vekirina Parlamentoya Kurdistanê Ednan Muftî em ji bo merasima vekirina parlamentoyê vexwendibû Hewlerê. Li wê derê min Nêçirvan Barzanî jî dît. Me berê li Enqerê hevûdu naskiribû. Min ji wî re got: „Kak Nêçirvan, ev 49 sal in ez di nav siyaseta Kurdan de me. Min heta niha jî kesekî tiştekî nexwestiye û ji we jî naxwazim. Divê hûn malekî bidin min." Wî jî got: "Li ser serê min, ser çavên min, tu birayê me yê mezin î, tu kengî werî, ez mala te hazir dikim." Û bi vî rengî ez di sala 2005an de çûm Başûrê Kurdistanê û piştî sala mala min hazir bû. Ez û hevjîna xwe li wêderê bicihbûn.

***Hestê poşmaniyê heta niha bi were çêbûye?***

Na, ez poşman nebûme, ez kêfxweş bûme. Dema em 1992an de çûn Başûr, Hewlêr wek gundekî bû, Silêmanî bajarekî kevnare bû. Em niha bi riheti dikarin bêjin: Eger mirov serê şeş mehan herê Başûr, dibînê ku Kurdistan tê guhertin.

***Gelo hûn rastî tu astengiyan hatin, çi ji aliyê zarava, çi jî ji aliyê mentaliyeta Kurdên Başûr?***

Na, ez rastî tu astengiyan nehatim. Lê bêgûman li herçar beşên Kurdistanê mentalîteyên cuda hene. Li Bakurê Kurdistanê bandora çand û aboriya Tirkiyeyê heye. Kurd di nav wê sîstema mezin bûne, xwendine, siyasetê kirine. Em hemû di dibistanê Tirkan re derbas bûne. Yanê kultura me ya Tirkiyeyê ye. Li Başûr çanda Ereban gelekî bandor kiriye. Wekî din li Başûr pirsgirêkekî me ya mezin hene: ew jî alfabeya erebî ye. Ji bo me bakuriyan ev pirsgirêkeke mezin e. Li herçar beşên Kurdistanê wiha ye. Her beşekî li gor siyaset, mentalîte, çand û aboriya wê dewleta ku Kurdistan parçe kiriye dimeşe. Ji ber vê yekê divê Kurdistan riyekê bide pêşiya xwe. Ev rê jî divê riyekî netewî be, rêyekî Kurdistanî û demokrasîk be. Em mecbûr in demokrat bin. Ev 50 sal in, em li Tirkiyê têkoşîna demokrasiyê dikin. Emê li Kurdistanê ji bo xwe demokrat bin?

***Ji dema ku we cara yekem serdana Başûr kir betirî 15 sal derbas bûn. Rewşa Başûr wê demê çawa bû? Bêgûman hin pêşveçûn çêbûn. Li gor we, evyek têr dikin?***

Gelek guhertinên berbiçav çêbûne. Wê demê dema em çûn Başûr, wek mînak pir tunebûn, em mecbûr diman ku seyareyên



(Wêne: Rûdaw)

xwe li avê xin. Em wiha di çem re derbas bûn. Wê demê tenê oteleki bi navê Zeytûn hebû. Parlamenterên Tirk li wê derê radizan, em diçûn malan. Îro em dinêrin li Kurdistanê gelek tişt hatine guhertin. Em dibînin sermayeya Ereban ber bi Kurdistanê tê. Ne tenê doktorên ku ji Bexdayê reviyane û ji bo ewlehiya xwe tên Kurdistanê, firmayê Urdinî, ji Emîratên Ereb, ji Siûdiyê tên û li Kurdistanê otêl, bazar û avahiyan çêdikin. Mebesta min çiye? Eger li Kurdistanê sistemeki aboriyê ya liberal hebe, wê Kurdistan di demekî nêzîk de dewlemend bibe. Ji ber wê yeke hem pêwîstiya me bi sermaya derve heye, hêm jî divê em bi xwe sermayeyekî ava bikin. Wek ku min dît niha li Kurdistanê cotkarî tune ye. Başe emê çawa zikê xwe têr bikin? Divê li Kurdistanê cotkariyeke baş hebe. Pêwîst nakê em ji Îran, Suriyê, Tirkiyê û deverên din xwarin û tiştên din binin. Otel û park divê werin çêkirin. Lê sanayî tişteki din e. Tiştên ku li vir dikarên werin çêkirin, divê em wan tiştan bi xwe çêkin. Pêwîstiya me bi fabrîkayan heye. Fabrîka tunebin karker tune, karker tunebin sendîka çênabin, sendîka tunebin demokrasî pêk nayê. Ev tişt bi hevûdû re girêdayî ne. Rast e li Kurdistanê niha demokrasî heye. Zindanên Kurdistanê ne wek yên Tirkiyê û Sûriyê ne, azadiya çapemeniyê heye. Em dibînin di demekî nêzîk de li Kurdistanê hilbijartin hene, lîsteyên cuda cuda û opozisyon heye. Li welatekî ku demokrasî lê tune be, opozisyon jî tuneye.

***Gelek kes ji beşên din yên Kurdistanê li Başûr bicih bûne?***

Niha derdorê 50.000 kesên ji Bakur wek karker li Başûr dixebitin. Wekî din hinek rewşenbîrên ji beşên din yên Kurdistanê li Hewlêrê bicih bûne. Kesên wek Alî Qazî û Sînem Bedirxan û hinekên din. Bêgûman em dixwazin ku çiqas rewşenbîr û xwendayê Kurdan li kuderê li diyasporayê hebê vegerê Kurdistanê. Mesela dema dewleta Îsraîl hat damezrandin, koçeberiyeki berbî Îsraîlê destpêkir. Cihû vegeriyan welatê xwe, vegeriyan „xaka pîroz". Divê Kurd jî vegerin Kurdistanê. Niha pêwîstiya Kurdistanê bi kêsên zanyar heye. Divê em piştgiriya vî beşê Kurdistanê bikin.

***Li gor statistîkên fermî li Başûrê Kurdistanê enflasyonekî di ware ragihandinê de heye. Tê gotin ku derdora 800-900 sazî û dezgehên ragihandinê hene. Ev hejmar li gor herêmeke biçûk wek Başûrê Kurdistanê ne hindik e û heta ku zêde jî tê dîtin. Ev tê wê wateye, ku li Başûr pirdengî û pirrengî heye?***

Li gor dîtina min pirreng û pirdeng e. Mesele Rûdaw derdora 5-6 hezaran difroşê. Gelek rojnameyên kêm difroşin, gelekên wan yên partiya ne, dîtinên patiyan belav dikin, bêperê tên belavkirin. Bila yên partiyan jî hebin. Bila xebata xwe bikin, bila birdoziya xwe belav bikin. Ev weke mecbûriyeteki ye li welatekî, heta ku demokrasî pêşkevê. Lê divê em riyekî bidin pêşiya xwe, ku ew jî divê partiyên Kurdistanê ji bo Kurdistanê bixebitin. Çima ev parti hatine damezrandin? Ji bo Kurdistanê, arman- ca me Kurdistan e. Ev dîtina min e. Dibê ku kesek bêje ev nerast e. Wê çaxê opozisyon çêdibê, mirov fikrên xwe bi azadî dibêje. Bi vî awayî reng û dengê welat her ku diçê dewlemendtir dibe.

***Çapemenî gelek caran wek hêza çarem jî tê binavkirin, û roleke giring di warê pêşveçûna civakî û çavdêriya demokrasiyê dibînê. Çapemeniya li Başûr rola xwe pêk tînê?***

Niha agahiyên min yên hûr li ser hemû rojnameyan tuneye. Ez nizanim kîjan çiqasî difroşê, bandore wan çiqas e. Niha herkes dibêjê Rûdaw rojnameyekî bêalî ye. Ev tişteki baş e. Hin rojname û kovarên din jî hene. Ev jî tişteki baş e. Tiştê ku li Başûr bala min kişand, gelek kovar û rojname hene. Tu diçê zozanan gelek kulîlk vedibin. Piştî meheki mirov dibînê ku hinek jî wan çilmisîne, hinek diminin. Di çapemeniyê de jî wiha ye. Eger çapemenî karê xwe baş pêk bînê, yên mezin wê mezintir bibin, yên biçûk jî wê neminin. Welatekî ku çapemeniya wî xurt bê, fikrê azad jî lê xurt e.

***Ewrûpî bi çavakî erênî li Başûrê Kurdistanê û demokrasiya ku li wêdêrê peyda buye dinêrin. Rewşa demokrasiyê li Başûr çawa ye?***

Li gor dîtina min baş e. Mirovên me hinekî bêtahmûlin. Mesele weke ku min bihîstiye kek Mesûd bi gel re cininek çêkiriya. Wî jî gel re gotiye "hûn rast dibêjin, gelek kêmasiyên me hene, lê em çi bikin, evtişt li çiyan tune bûn." Divê hinekî em bi sebir bin. Welatekî ku 50 salî şer lê hebû, jî nû ve tê avakirin. Hertişt



(Wêne: Rûdaw)

hema nabê, dem jêre divê. Li cihanê hemuyê wihaye, lê li Kurdistanê dîsa jî hertişt zu pêşdikevê. Hemû beşên vê çivakê divê werin avakirin, çi aborî, leşkerî , çapemenî, dîplomasî. Ev karên giran in. Divê em xwe bikin şûna siyasetvanên xwe, ez meraq dikim Kak Nêçirvan şêvê çend demjimêran radikevê. Ji her aliyan ve di navbera me û Ewrûpiyan ferqeki mezin heye. Li welatê me eşairî heye, ev welat ji nav şerekî derketiye, çanda şer di serê herkesî deye. Bi saya têkoşîna gelê Kurd beşekî welatê me azad bûye. Dive em bi çavekî erênî lê binêrin, alîkariya vî beşî bikin, heta bêşên din jî azad bibin. Di nav me Kurdan de bêsebrî û bêdadî heye, galegal heye, dibêjin filan rêxistinê wiha kir. Li her welatî pirsgirêk û tengasî hene, ma welatekî bê pirsgirêk heye? Belkî tengasiya herî kêm li welatê me ye.

***Hin ji gelek kes ji Başûr ber bi Ewrûpayê koç dikin û di kampên penaberan de di rewşeke xirab de dijîn. Çima ev kes pêşeroja xwe li Ewrûpayê, lê ne li welatê xwe Kurdistanê dibînin?***

Xewnan dibînin. Ew difikirin ku eger li Ewrûpayê bijîn, jiyanek xweş derbas dikin. Mesela min li Romayê dît, kampekî gelekî mezin heye, penaberên Kurd bi şev û roj li wê derê ne, di çadirên biçûk de dijîn. Divê em li dijî vêyekê tedbîran bigrin: berî hertiştî divê derfetên kar bên peydakirin. Dema miroveki karê xwe fîrot, dive bikaribê bi hatina jî wî karê xwe biji, zarokên xwe perwerde bike, debara xwe pê bike. Xortên me bi xeyalan derdikevin berbî Ewrûpayê. Dema ku dighijin wir, dibînin ku ne wiha ye. Wekî din jî li gelek bajarên Kurdistanê avahî ji bo malbatên şehîdan tên çêkrin. Em dibînin ku Kurdên Sovyeta Berê jî feqîrin, belengaz in. Em jî bo wan jî dikarin malên wekî yên malbatên şehîdan avabikin û wan li Kurdistanê bicih bikin. Divê em bingehekî wiha ava bikin, ku kesek pêwîst nebinê ji Kurdistanê denekevê. Eger aboriya Kurdistanê baş bibê, wê kesekî ji welatê xwe Kurdistanê koç nekê.

***Ew hêza Kurdistan heye ku wan derfetan amade bike, ku kesekî pêwîstî bi koçbûnê nebînê.***

Sal bi sal wê xurt bibe. Vê gavê li cihanê qeyranêkî aborî heye. Bandora vê qeyranê li herderê çêdibê. Ewrûpa her kû diçe feqîr dibe. Ez li Ewrûpa û li Kurdistanê jî dijîm û danûstendinê dikim. Îro rewşa Kurdistanê ji ya gelek welatan baştir e.

***Niha bi kîjan karan re mijûlî?***

Ez li ser teriqata Neqşibendî pirtûkekî amade dikim. Çima Neqşibendî li Kurdistanê ewqas bihêz e? Nivîsandina vê pirtûkê wê yek du salan dom bike. Wekî din bîranînê min di nivê de mane, dîrok û encamên Özgür Gündem û Parlamentoya Kurdistanê li Derveyî Welat (PKDW) dive bên nivîsandin. Û gelek destnivîsên min li ser gelek mijar hene. Ez li ser van dixebitim.

## Ozan Diyar:

# Di klîban de jin xirab tên bikaranîn

**Newzad Çarles / Deştî Sebah**
**Hewlêr (Rûdaw)** – Ozanê navdar Diyar dibêje di klîbên muzîka kurdî de jin bi awayeke xirab tên bikaranîn û bêrêzî li beramber jinan tê kirin. Diyar di serdana xwe ya Hewlêrê de bersiva pirsên Rûdawê da û gelek tiştên balkêş anî ziman.

***Wexteki stranên siyasî gelek dihatin guhdarî kirin. Niha heta çi astekî ew stran pêwîst in?***

Şoreşa gelê me ji bo azadiyê berdewam e. Li Başûrê Kurdistanê derfetekî çêbûye, artêşa dijmin li vir nemaye û wek berê ne di bin zordariya dijmin de ye. Lê li hersê parçeyên din yên Kurdistanê hîn jî tekoşîneke dijwar dimeşe. Hunermend jî ku bi gel re dijî, pêwîst e stranên şoreşgerî bêje. Herwiha stranên din yên bi naverok jî bêje lê ne stranên vala û pûç. Rast e jiyana gelê me jî berdewam e, çand û folklor dewlemend e, lê berdewam berhemanîna stranên şoreşgerî bo Kurd pir pêwîst e.

***Wek hunermendên bakur li Ewrûpa hîç sazî û navendeke we heye?***

Yekîtiyeke me heye, Akademiya Kurdî heye, berê Koma Berxwedan hebû, niha Eniya Çandê heye, dema bûyereke hunerî rû dide em hemû tên ba hev û stran û sirûdan dibêjin. Hinek ji wan hunermendên Kurd yên derveyê welat bi mêjî û rihê xwe ne li welat in, lê em dema gelê me serkeftinekê bidest tîne yan komkujiyekî di qewime, rojeke şadî yan şîneke netewî çêdibe em hertim bi hunera xwe li gel netewa xwe digrin û dikenin, ger kêm jî be.

***Muzîka Kurdî û Tirkî tê tevlîhev kirin, hûn vê yekê çawa dibînin?***

Ew kareki xelet e, gelek hunermen li Tirkiyê ku bi esil Kurd in, huner û muzîka Kurdî dikin Tirkî, didizin û xirab dikin. Bi destê Kurd rewşenbîriya Kurd dizîne. Ew xiyanet e, hunerê Kurdî bibe û bike milkê Tirk, Ereb û Ecem.

***Çima hûn stranên Tirkî dibêjin?***

Min berê bi Tirkî stran gotine, lê niha ji di her albûmeke min de straneke Tirkî heye, da zimanê tekoşîna me berfirehtir bibe. Hemû stranên min yên Tirkî, stranên şoreşgerî ne. Me xwestiye zimanê şoreşa me fam bikin.

***Li Tirkiyê hûn qet li ser hunera xwe hatine sizadan yan pêrgî zehmetiyan hatine?***

Belê niha li Tirkiyê li ser dû stranan ez dame dadgehê. Dadgahê li ser strana 'Natirsim' û ya din jî li ser straneke Tirkî ya şoreşgerî ye. Bi mebesta lêkolînê sê caran jî aliyê polîsan ve hatime girtin. Lê li ba min tişteki normal e û nabe pirsgirêk ger mirov ji bo gelê xwe bike. Dema dijmin li ser gelê min eziyetê dide min, wê demê min dilxweş dike. Ew min natirsîne û aciz nake, berevajî dema dizanim stranên min dijminên min aciz kirine, kêfxweş dibim.

***Berî bi demekê hunermend Dîno û Ozan Aydin ji Firokexaneya Hewlêr hatin vegerandin û rê nedan derbasî Kurdistanê bibin, raya we li ser vê çiye?***

Ew tişteki pir xirab bû, şerme tu rê nedê Kurdek werê welatê xwe û bi paş de vegerîne, êdî sedema wê her çi be, li dinyayê tişteki wiha tune. Tiştên balkêş li ba Kurdan diqewimin. Me ew bûyer şermezar kir. Sedema wê her çi be, kesek be, dewletek be yan partiyek be ne rewa ye. Ev çendîn sal em li xeribiyê û li derveyî welat dijîn, em bi hesreta welat dijîn. Ez wek hunermendeki qet vêna qebûl nakim. Tiştên bokratîk û rotîn her dibin, lê pir şerm e rê nedin te tu werê welatê xwe. Hêvîdar im careke din tiştên wiha dûbare nebin. Hunermend bi dilxweşî werin wî parçeyê azad yê welatê me.

***Gelek caran bi sedema ketine bin bandora stîla Farisî û Erebî hinek stranbêjên Kurd tên rexnekirin, hûn çi dibêjin?***



(Wêne: Rûdaw)

Ew jî nezanî ve tê. Dibe ku ez jî di jêr bandora wê nezaniyê de bijîm. Gel hunermend teqlîda hunermendên biyanî dikin û stîlên din bikar tînin, ev ne rast e û ne jî baş e. Ya baş û giring tu stîla Kurdî modern bikî û bi pêş de bibî. Lê belê tu herê teqlîda hunermendên Tirk bikê, ev ne tişteki baş e. Ew teqlîdkirin li bakur jî heye, lê li Başûrê Kurdistanê pir zêde ye, hemû berê xwe didin rêze filên dramayên Tirkî. Dema ez wêneyekî hunermendên Tirk li vir dibînim, min pir diêşîne. Divê em bi dewlemendiya hunera xwe li beramber wan rawestin. Pêwîst e bi çêkirina berhemên baştir rê li vê diyardeyê bê girtin. Madem ez Diyar im, divê berhemê wiha biafirînim, xelkê me guhê xwe nede stranbêjên Tirk û Fars û guhê xwe bidin me.

***Di klîbên we de jin pir kêm in çima?***

Min gelek stran li ser pirsgirêkên jinan çêkirine. Mixabin jin wek amûrek tên bikaranîn, heta wiha lê hatiye jin di reklamên otomobîlan de jê tên bikaranîn. Di stran û klîban de jî wan bi awayekî baş bikar nayinin, min ev nekiriye. Di klîbeke min de li Başûrê Kurdistanê, jineke hatiye bikaranîn, lê bi rastî min ne dixwest û ne lîser daxwaza min bû. Di klîbên Kurdî de jî jin bi awayekî xirab tê bikaranîn, bê rêzî li beramber wan tê kirin.

# Bi sedan Kurd kuştine

**(Ji rûpela 1)** Disa di sala 1994-95an de me bihist ku 4-5 ciwan dixwazin tevlî PKK'ê bibin. Me ew girtin û kuştin. Paşê termên wan me li nezî gundê Bozalanê veşart."

**Îtîrafkar Hıdır Altuğ îtîrafa cînayetan dike:**

"Di zivistana 1995an de ji Sûriyê du Kurd hatin û xwestin ku bibin hevwelatiyê Tirkiyê. Lê me bi fermana Cemal Temizöz ew kuştin. Ez navê wan nizanim. Di havîna sala 1995an me tespît kir, ku sê ciwan dixwazin tevlî PKK'ê bibin. Me ew girtin û hevalê me Adem Yakın bi fermana Cemal Temizöz ew kuştin."

**"Li her bajarî tîmên kuştinê hebûn"**

Serokê şaxê Merdînê yê Komela Mafê Mirovan (IHD) Erdal Kuzu li ser vekirina dozê ji Rûdawê re wiha axifî: "Ev heft kes endamên JÎTEM'ê ne. JÎTEM'ê li hemî bajaran tîmên xwe ava kiribû. Abdulhakim Güven ji li Cizîrê serkeşê wan bû. Li Rihayê Levent Ersöz û li Qoserê ji Atilla Uğur serkeşiya tîmên JÎTEM'ê dikirin. Pêwist e dozgerî li dijî hemûyan dozê vekê."

Di mehên borî de ÎHD'ê kampanyaeki bi nave 'Bila birên Bo taşê vebin' destpêkiribû. Paşê di nav van biran de du kakût hatin ditin. Kuzu dibeje: "Li Merdînê 85 winda hene. Me ji 16 malbatan DNA'ya wan girt, lê em negihiştin tu encamê. Ez bawer dikim dema em malbatên van kakûtan bibînin, wê demekî nû destpêbikê."

Serokê şaxa Amedê ya ÎHD'ê Muarrem Erbey ji ji Rûdawê re wiha got: "Ev iddianame geleki giring e. Gelek kuştin û infaz derxistiye hole. Lê kesên ku axifîne hineki xwe parastine." Erbey paşê bal kişand ser Arif Doğan û wiha berdewam kir: "Arif Doğan damezrênerê JÎTEM'ê ye. Lê ew hate berdan. Dibejin ku 'nexweş' e. Lê di zindanan de 19 girtiyên geleki nexweş ji hene. Çima wan bernadin?"

**Govikên Kamil Atak**

Di vê dozê de birayê Kamil Atak, Mehmet Nuri Binzet şahidiyê dike. Binzet ji sûcên xwe itiraf kiriye û ev doz li ser axaftinên wî vebuye. Di nav iddianemeyê de axaftinên Binzet ciheki taybet digirin û van agahiyan dide:

"Di sala 1993an de di 12 saliya xwe de ez bûm cerdevan. Birayê min Kamil Atak sûcdar bû û dewlet li wî digeriya. Birayê min Rauf Atak ji di sala 1986an de li Cizîrê heft endamên PKK'ê kuştin. Ji bo vê ji PKK bû dijminê malbata me. Di sala 1987an de Cem Ersever (damezrênerê JÎTEM'ê) û birayê min Kamil Atak hatin cem hev û peymaneki çekirin û malbata me bû cerdevan. Em ji eşira Tayan in. Eşira me pêwendiyên xwe bi me re qut kir. Em ji hatin navenda Cizîrê."

Mehmet Nuri Binzet dibeje ku General Hasan Kundakçi û Kamil Atak di sala 1993an bi hevre axifîne û di nava Cizîrê de reveberiya ewlekariyê ketiye destê Kamil Atak û serhengê wê demê Cemal Te- mizöz. Binzet di berdewema axaftinê xwe de wiha dibeje:

"Piştî wê axaftinê em li nava bajêr geriyan û pirs û binçavkirinan destpekirin. Me di binê malan de govik çekirin. Ev govik cihê lêpirsînê bûn. Govikek di bin mala Kamil Atak de bû. Mala wî li Taxa Cudî bû. Disa li wê taxê di bin mala birayê min yê din Kukel ji govikek hebû. Ke bi navê PKK'ê kar dikir, me ew anîn van govikan. Min demên dirêj li van govikan nobedarî kir. Disa yeki bi navê Mistefa hebû. Ew ji niha di girtigehe de ye û mirovê Hizbûllahê bû. Govikeki wî ji hebû."

**Cerdevanan kî kuştin?**

Mehmet Nuri Binzet li ser tevkujiyên wê demê ji van agahiyan dide: "Di sala 1993an de Beşir ji alî Bayram Polatê cerdevan ve hat kuşt. Di rêbendan an ji rêşemiya 1994an de Îskan Aslan hat kuştin. Îskan ji aligirê PKK'ê bû. Me girt û anî govikê. Piştî çar rojan Abdülhakim Güven, Adem Yakın û Selim Hoca ew kuştin. Di havîna sala 1994an ji Mustafa Aydin û Mehmet Îlbasan hatin kuştin. Di kuştina wan de disa destê Cemal Temizöz, Kamil Atak, Abdullah Aşan, Adem Yakın û Abdulhakim Güven hebûn. Di sala 1995an ji li gundê Almasigi Abdurrahman hat kuştin. Ewê kuştinê birayê min Kamil Atak da. Ramazan Uykur ji lawê Kamil Atak Tamer kuşt. Di sala 1997an de ji xizmê me Abdurrezzak Binzet bi fermana Kamil Atak hat kuştin."

**JÎTEM'ê 12 Cerdevan Kuştin**

Di vê navberê de li gor nûçeyeke Rojnama Tarafê leşkereki Tirk ku di salên 1994 û 1995an de li Şemzînan leşkerî kiriye dibêje 12 cerdevan ji aliyê JÎTEM'ê ve hatine kuştin. Leşkerê ku navê wî nehatiye eşkerekirin nexşeya cihê ku cesedê cerdevanan lê hatine veşartin ji şandiye serdozgeriya Amedê. Li gor nûçeyê leşkerê navborî ji serdozgeriya Amedê re nameyeki şandiye û şahidiya xwe ya buyerê bi hûrî aniye ziman. Li gor ifadeya leşker, di meha sibat an ji adarê de 12 cerdevan bi tawanbariya alikariya PKKê ve hatine girtin û li baregehê li wan işkence hatiye kirin. Herçend cerdevanan tawanbariya alikariyê redkirine ji ew hatine kuştin û di nav erdê tabûra Şemzînan de hatine biaxkirin.

Serdozgerê Amedê Durdu Kavak ji di derbarê buyerê de got ku ji ber hadise di nav sinorê serdozgeriya Wanê de qewimiye wan ev gilinameya leşkerê navborî şandiye Wanê.

Li aliyê din li gor nûçeyeke ANF'ê piştî ku gilîname gihiştiye serdozgeriya Wanê, di nav tabûra Şemzînanê de ji bo ditina cesedên cerdevanan kolan hatine destpêkirin. Rayedaran di derabarê encamê kolanê de agahî nedan.

Piştî ku buyer di çapemeniyê de hat ragehandin, malbata kesên kuştî di derbarê sûcdaran de amadekariya vekirina dozeki dikin. Ji xizmên kuştiyan Emrullah Öztürk ji ANF'ê re ragîhand ku wê li dijî sûcdaran çi ji destê wan were bikin.

## Endamê Polîtburoya PDKê Mesûd Saleyî:

# Wê kursiyên me kêm nebin



**Elî Heme Salih**

**Silêmanî (Rûdaw)** - Endamê Polîtburoya Partiya Demokrat ya Kurdistanê (PDK) Mesûd Saleyî dibêje rêkeftina stratejîk li gel hemû egerên lawazbûna Yekitiya Niştimanî ya Kurdistanê (YNK) tişteki giring dibînin û gotûbêja pêkanîna hikûmetê hîştine piştî encamên hilbijartinê.

Mesûd Saleyî, di derbarê hilbijartinê de ji dibêje ew ji xwe û aligirên xwe bawer in. Saleyî dibêje 'PDK û YNK xizmeta gel dikin û armanca wan xizmeta hemû çînên civakê ye. Berevajî hinek nerînan pêgeha aligirên PDKê roj bi roj zêdetir dibe, ji bo hevalên YNKê ji her heman baweriya wî heye.'

Saleyî di derbarê pirsgirêkên navxweyî yên YNKê ji dibêje, 'tenê yek YNK heye û rêzdar Celal Talabanî sekreterê wê ye. Saleyî bawer nake ku pirsgirêkên navbera YNK'ê li ser encamên hilbijartinê û dengeya navbera hikûmetê bandora xwe bike.

Li gor texmînên Saleyî wê wek Listeya Kurdistanî hejmarek baş ji kursiyan bi dest bixin.

Li gor Saleyî, Silêmanî ji bo Liste ya Kurdistanî xala lawaz nîne. Lewra YNK bi hevkariya PDK'ê li ser pirkirina wan haletên ku wek lawaz tê binavkirin, kar dike. Endamê Polîtburoya PDK'ê di derbarê tirsa piştî eşkerebûna hilbijartinan de ji dibêje ku li Kurdistanê tiştên wek Îranê naqewimin.

Saleyî di derbarê endîşeyên sextekarî û binpêkirina qanûnên hilbijartinan ji wiha dibêje: "Ji bilî komîsyona bilind ya hilbijartinan, çavdêrên navnetewî ji hatine vexwendin. Binpêkirin di jêr çavdêriyê de wê bên tomarkirin. Wê demê xuya dibe kê sextekarî kirine. Eger Listeya Kurdistanî ji rênimayiyan derbikeve, lazim e karên pêwîst li gel wan bê kirin: "Em gel û rojnamevanan dikin şahid, eger ji hêla lista Kurdistanî de binpêkirinên bi vî awayî hebin, bila ji raya giştî re bê ragehandin. Bawer nakim ku lista Kurdistanî binpêkirineke wiha bike, lê binpêkirinên listeyên din eşkere û ne demokratîn. Mixabin pirranî ya binpêkirinan ji aliyê lista Goran ve tênê kirin."

Saleyî di derbarê derketina Listeya Goran û dabeşbûna dengên YNK'ê de dibêje wê 'tu tişt li ser wê hevpeymana wan bi YNK'ê re bandor neke: "Em dizanin deng ji pêgeha YNK kêm dibin, lê em hevpeymana navbera PDK û YNK'ê gelek ji wê giringtir dibînin. Çimkî berjewendiyên bilind yên gelê Kurd girêdayî hevgirtina PDK û YNK ne.

Mesûd Saleyî di derbarê Listeya Goran û Îslamiyan de ji dibêje, 'ew ji beşek in ji xelkê Kurdistanê û mafê wan heye liste û kursiyên xwe hebin.'

# Gaza Kurdistanê ji bo Ewrûpayê stratejîk e

**(Ji rûpela 1)** Hêla Nabucco wê li Enqerê bi xetên gazê yên heyî, ku berbi Kurdistanê ve diçin, bên girêdan. Li gor ku hatiye pilankirin, ji sala 2014an û paş de gaz wê bi reya vê xetê ber bi Ewrûpayê ve bê şandin. Di vê peymanê de herpênc welatan qebûl kirin, ku ji ber çi sedemê bibê bila bibê, ewê bi tu awayî derbasbûna gazê ber bi Ewrûpayê asteng nekin. Berdevkeki YE'yê li ser vê babetê got ku 'anîna gazê ji Asyaya Navîn ji bo YE'yê xwedî giringiyeke stratejîk e.

Li gor ku hatiye pilankirin, wê bi riya xeta gazê Nabuccoyê salane 31 milyar kûbikmetre gaz bighijin Ewrûpayê. Çiqasî gaza ku wê bi reya xeta Nabuccoyê bighijê Ewrûpayê têra hemû welatan YE'yê nekê ji, lê dîsa bi vê xetê reyeki alternatîfeki ji gaza Rûsyayê re peyda dibê. Bo mînak tenê Almanya salane pêwîstî bi 100 milyar kûbikmitre gazê heye.

**Bihaya Nabuccoyê 8 milyar Euro ye**

YE bi gelek awayan, bi giştî bi nirxê 4 milyar Euro piştgiriya vê projeya ku bihayê wê bi heşt milyar Euro hatiye destnîşankirin, dike. Weki ku xuya dike, bi vê peymana ku li Enqerê hat morkirin, kelema herî mezin li pêş çêkirina xeta gazê hat rakirin. Birêvebirê Konsortiûma Nabuccoyê di vê derbarê de wiha axifî: „Niha êdî bingheki qanûnî ji bo vê projeyê çêbû û anîna gazê ji bo hemû miştirya bi awayeki wekhev û vekirî tê garantîkirin."

Şeş firmayên Ewrûpî şirikên wê konsortiuma Nabuccoyê ne. Di nav wan de mezintirîn firmaya enerjiyê ya Almanyayê RWE û firmaya Awûstûryayê OMV jî hene. Firmaya OMV di heman demê de pêşengiya çêkirina vê xetê ji dike. Weki din firmaya Tirk Botaş, şirketa dewletê ya Bulxarî BEHEAD, ya Romanî Tranzgaz û ya macarî MOL ji di vê konsortyomê de cih digrin. Weki şiretkarê siyasî ji bo Nabuccoyê ji Wezîrê Derve yê Almanya yê berê Joschka Fischer hatiye tayinkirin.




**Gaza Kurdistanê ji bo Ewrûpayê xwedî girigiyekî stratejîk e**

Projeya Nabucco ji bo Îraq û Herêma Kurdistanê çirûskek hêviyê ye ji bo xurtkirina aboriya Îraq û Kurdistanê. Li gor ku hatiye pilankirin, divê amadekariyên şandina gaza Kurdistanê ji bo derve heta sala 2014 bi dawî bên, yanî di wê salê de, ku projeya Nabucco ji dikevê kar.

Ji bo Ewrûpayê gaza Kurdistanê geleki giring e, ji ber ku Azerbeycan gaza xwe bi temamî difroşê Tirkiyê û Turkmenistan û Qazaxistanê ji peymanê şandina gaza xwe bi Rûsyayê re mohrkirine. Tenê Kurdistan maye, lê heta niha hêleki gazê di navbera Tirkiye û Kurdistanê de nîne. Ji ber ku Ewrûpa hewldidê ji mecbûriyeta gaza xezayî ya Rûsyayê rizgar bikê û Kurdistan ji xwedî rezervên mezin yên gazê ye, Kurdistan di vî warî de ji bo Ewrûpayê ciheki stratejîk digrê. Tê çaverêkirin ku eger gaza Kurdistanê bighijê Ewrûpayê, wê demê wê şandina petrola Kurdistanê ji ji bo derve hêsantir bibê. Hikûmeta Kurdistanê ji piştgiriya çêkirina Xeta Nabuccoyê dikê. Hikûmeta Herêmê vê projeyê wek garantiya aramiya herêmê dibinê. Ji gulana isal ve firmayên Awûstûrî û Macarî OMV und MOL li birên gazê yên Xormor û Çamçamalê dikolin.

# Emê 46 kursiyan bidestbixin

**(Ji rûpela 1)** Mihemed Tofiq Rehîm di hevpeyvîna ligel Rûdawê de dibêje ku ewê piştî hilbijartinê PDK û YNK'ê li Kurdistanê bikin opozisyon. Li gor rayedarê Listeya Goran 'hemû kadroyên YNK'ê yên li Ewrûpa ligel Listeya Goran nin.'

Mihemed Tofiq Rehîm di derbarê beşdarbûna hikûmetê ya piştî hilbijartinê de ji wiha dibêje: "Tevlibûna me ya parlamenê dimîne li ser nexşeya parlamenê. Piştî ku encam diyarbûn emê ji helwesta xwe diyar bikin." Cigirê Norşirwan dibêje ew di her haletî de ji, bo tevlibûna hikûmetê bi Listeya Kurdistanî re hevkarî nakin.

Rayedarê Dezgeha Wişe Rehîm di derbarê hilbijartina serokatiya Kurdistanê de ji dibêje ew palpiştiya hiç berendameki nakin û ji ber ku sistema siyasî ya Kurdistanê parlamenî ye ew esasen hilbijartina serokatiyê ji boykot dikin.

# Bêhna provakasyonan ji Silêmaniyê tê

**(Ji rûpela 1)** Alikarê Sekreterê Yekitî Niştimanî Kurdistan (YNK) Celal Talabanî Bo Karûbarê Hilbijartinê Letif Şêx Umer dibêje, "bêhna provakasyonan ji Silêmaniyê tê." Şêx Umer di heman demê de bawer dike ku hêzên ewlekariyê dikarin rewşê kontrol bikin. Şêx Umer di derbarê rewşa hilbijartinê de ji Rûdawê re dibêje ew li Silêmaniyê ne hevkariya Îslamî û ne ji Listeya Goran wek hevrikê xwe yê bihêz nabinin. Alikarê Talabanî di derbarê gotegotên ku di nav xelkê de belavbuye û tê gotin ku 'bêhna xwînê ji Silêmaniyê tê' de ji wiha got: "Bêhna xwînê ji Silêmaniyê nayê, lê bêhna provakasyonan jê tê. Dezgehên Hikûmeta Kurdistanê, polis û çalakiyên sivîl kontrola rewşê dikin û eger heta niha nermî pêşan dabin, ji bo wê yekê bû da ku tundûtûjî çênebe. Helbet li beramber binpêkirina yasayan her ji her çi aliyeki ve be wê ji niha û pê ve wê zêdetir bişidînin."

Şêx Umer berpirsiyariya bergiriya metirsiyên ku di dema dengdan û derçûna encaman de ji dispêre Komisyona Bilind ya Serbixwe ya Hilbijartinan: "Divê komisyon di vê meselê de erka xwe bi cihbîne û derfet ji hiç kareki tundûtûjiyê re nede. Ez bawer nakim di nav cemawerê de tundûtûjî hebe, belkî çend zarok û çend gencên ji hişbirî û ji kîn û aciziyê tijîkirî, li ser caddeyan pirsgirêkan çêbikin. Ev ne milmilane û pirsgirêk e di nav cemawerê de. Kesên wisa kêm in û dixwazin vê cejna hilbijartin û demokrasiya me têk bidin. Ne şerê navxweyî ye û ne jî cemawer bûye du beş, tişteki bi vî awayî ji neqewimiye."

# Fransa li Sarkozy 14.123 Euro ceza birî!

**Köln (Rûdaw) -** Ji dema Şoreşa Fransayê ev cara yekê ye, ku budçeya Serokekî Fransayê di ber çavan re tê derbaskirin. Encam: Divê Serokê Fransayê Nicolas Sarkozy 14.123 Euro li xezîna dewletê vegerîne.

Ji dema padşahê Fransayê Ludwig XVI. (1774 heta 1791) budçeya serokekî Fransayê ji aliyê saziyekî serbixwe nehatibû kontrolkirin. Saziya Çavdêriya Xezîneya Dewletê ya Fransayê di dawiya lêkolînê xwe de ji Sarkozy daxwaz kir, ku ew 14.123 Euro li xezîna dewletê vegerîne. Ev pere Sarkozy ji budçeya Qesra Élysée xerc kiribû. Lê derket ku Sarkozy ew ji bo xerciyên xwe yên şexsî bikaranîna. Wêkî din Saziya Çavdêriya Xezîneya Dewletê rexne li Sarkozy kirin, ku ew gelek mesrefê li koşk û qesrên ku ew bikar nayînê, dike. Lê bi giştî saziya navborî ji karê Sarkozy kêfxweşe.



Sarkozy di dema hilbijartina xwe bo serokê Fransayê di sala 2007an de soz dabû ku ewê hemû qaseyên reş yên serokên berî bigrê û budçeyekî ronî ava bikê. Tê idiakirin ku budçeya Qesra Élysée 110 milyon Euro ye, lê Serokê Saziya Çavdêriya Xezîneya Dewletê Philippe Séguin di daxuyaniyekî ji bo rojnameya Figaro ev iddia redkir. Çavlêgerandina bûdçeya Qesra Élysée ji aliyê Saziya Çavdêriya Xezîneya Dewletê li ser daxwaza Sarkozy bixwe pêkhatibû.

# Quran bi muzîkê xwend, 5 sal ceza girt

**Mehşed -** Stranbêjê esil Kurd Muhsen Namjo ji bo ku ayetên Quranê bi mûzîka xwe re li hev aniye, ji alî rejîma Îranê ve 5 sal cezayê zindanê lê hat birîn.

Stranbêjê navdar ji ber doza ku bêedebiyê li hember ayetên Quranê kiriye, berî salekê ji aliyê mamosteyekî ve hatibû gilîkirin. Muhsen Namjo berî niha ji dezgehên fermî yên dînî re nameyeke lêborînê şandibû û tê de dabû zanîn ku ew stran bê xebera wî ketine ser internetê û ji bo vê yekê lêborîna xwe xwest. Lê dadgeha Îranê guhê xwe neda vê lêborîna hunermendî.



Dema dadgeha Îranê 5 sal lê birî, Namjo tevlî rûniştina dadgehê nebû. Li gor biryara dadgehê malpera wî ji hate girtin.

Namjo di sala 1976'an de li gundê Torbat Jam ya bi ser Xorasana Rezewî ji dayik bûye. Hêjayî gotinê ye ku Muhsen Namjo dişibiya stranbêjê navdar Bob Dylan.

# WHO: Şewba berazan ji kontrolê derdikevê

**Serwîsa Cîhanê -** Şewba Berazan ku destpêkê li welatê Amerîkaya Navîn Meksîkayê peyda bû û bû sedema mirina bi sedan kesan, her kû diçe li seranserê cîhanê belav dibê û gelek welat û saziyên tendurustiyê kirin nava alarmê. Weke ku Saziya Tendurustiyê ya Cîhanî (WHO) daxuyand, şewba berazan (influenza A/H1N1) wê hîn ji belav bibê. Ji ber vê yekê WHO'yê ji her welatekî dixwazê ku tedbîrên pêwîst bigrê. Dîrektora WHO'yê Marie-Paule Kieny bang li fîrmayên dermaçêker kir, ku zorê bidin hewlên ji bo çêkirina dermanekî li dijî vîrûsa H1N1. Li gor daxuyaniya wê saziyê ne mumkune, ku pêşî li vê şobayê bê girtin: „Kômîteya me gihîşt wê qenaetê, ku ne mumkun e pêşî li vê pandemiyê be girtin. Ji ber vê ji divê ji hêmû welatan re derfet bên çêkirin, ku dermanan li dijî vê nexweşiyê peyda bikin." Pispor li bendê ne, ku herî zû di meha rezberê de dermanekî li dijî şewba berazan bê dîtin.

Heta niha herî zêde Meksîkayê para xwe ji vê nexweşiyê girt. Piraniya kesên ku bi vê şewbayê mirine ji vî welatî ne û 1614 kes ji pê ketine. Şewba berazan yekem epidemiya sedsala 21an ne. Li gor îhtimalan heta niha bêtirî 1 milyon mirov bi vê nexweşiyê ketine. Li gor agahiyên dawî ya Saziya Şewban ya Yekîtiya Ewrûpayê (ECDC), heta niha zêdetirî 120 hezar mirov bi şewba berazan ketine û 589 kes jî mirine, lê dibê ku ev hejmar pir zêdetir jî bê.

Ji ber tirsa şewba berazan gelek welat ketin nava panîkê û bang li hevwelatiyên xwe kirin ku xwe li dijî vê nexweşiyê derzî bikin. Tê çaverêkirin ku heta payiza îsal bi dehmilyonan mirov li herderê cîhanê bên derzîkirin. Tenê li Almanyayê wê bang li derdora 25 milyon kesên di pişeyên weke polîs, xebatkarên tendurustiyê, ekîbên agirvemiranê bê kirin, ku xwe derzî bikin. Li enstituya Almanî Robert-Koch-Institut heta niha navê 834 kesên bi îhtimala şewba berazan hatiye tomarkirin. Derzîkirineke bi vî awayê berfireh li Almanyayê cara dawî di sala 1961an de pêkhatibû.




# Îngîltere eşkenceya xwe bi polîsê Pakîstanê dide kirin

**London (Serwîsa Cîhanê) –** Li gor angaştên parlamenterê kevneparêz David Davis, servîsa îstixbaratê ya Brîtanî ji bo ku êşkence li bersûcekî bikin, ev daye destê polîsên Pakîstanê. Rangzieb Ahmed, beriya du salan dema ji Pakîstanê vegeriyabû Îngîltereyê, ji aliyê polîs ve hatibû girtin. Ew wek mîlîtaneke El Kaide yê hikum xwariye. Doza Rangzieb Ahmed, wek delîlekî ku Îngîltereyê hevkariya êşkencê kiribe tê nîşandin. David Davis ê di heman demê de li wezareta karê hundirîn dixebite, di Kamaraya Avam de daxwuyaniyek da û servîsên îstixbarata Brîtanî bi hevkariya êşkenceyê sûcdar kir. Servîsên îstixbaratê yên Îngîltereyê, bi guman in ku ev kesê hemwelatiyê Îngîltereyê ye endamê El Kaide ye. Davis, dide zanîn ku Îngîltereyê "karê êşkenceyê hewaleyî hikumetên biyanî kiriye" û dixwaze ji bo vê yekê doz bê vekirin. Davis, van daxwuyaniyên xwe di çarçova destlênedaniya parlamenterî de dike. Li Îngîltereyê heger parlamenter axaftinên xwe "di hundirê sinorên parlamentoyê de" bikin, li gor destlênedaniya yasayî ya parlamenterî, li dij van kesan dozên îftira û reşkirinê nayên pejirandin. Di dozên cezayî de, destlênedaniya parlamenteran nîne.

**Çîroka Ahmed**

Rangzieb Ahmed, ji sala 2005an ve li Îngîltereyê di bin çavdêriyê de bû. Di mehên havîna 2006an de, ji bo sûcdarkirina Ahmed komekî delîl hatibûn bidestxistin. Lê, ji cihê ku polîs û servîsa îstixbaratê MI5, Rangzieb Ahmed li Îngîltereyê bigrin, rê dan wî ku ew biçe Pakistanê.

Rangzieb Ahmed, di 20ê tebaxê de ji aliyê meqamên Pakistanî ve hat girtin. David Davis, iddia dike ku, ev girtin li ser pêşniyara Îngîltereyê pêkhatiye. Li Pakistana ku bi miameleyên xerab yên li dij gumanbarên teror navdar e; Rangzieb Ahmed, piştî ku hatiye girtin êşkence ditiye, bi daran û bi qemçiyan lêdan xwariye û herwiha neynûkên sê tiliyên destê wî yê çepê li vê derê hatine kişandin.




David Davis, di daxwuyaniya xwe de dibêje, dema servîsa îstixbarata Brîtanî MI5 Rangzieb Ahmed li Ewlekariya Manchester girtine bin çav, ji bo ku ji rayedarên Pakistanî re bişînin, lîsteyeke pirsan amade kirine. Li gor vê yekê, MI5'yê lîste gihandiye servîsa îstixbaratî ya Pakistanê ISI. Rangzieb Ahmed, dibêje li ser kaxizên pirsan ku jê pirsîne, ibareya "Îngîltere û Pakistan/Veşartî" hebûye. Ahmed, herwiha dema girtû buye, karmendên MI5 û MI6 serdana wî kirine. Piştî ku ewî ji wan re gotiye êşkence ditiye, êdî neçûne serdana wî.

Rangzieb Ahmed, salekî piştî girtina xwe, di îlûna 2007an de ji aliyê Pakistanê ve hatiye dersînorkirin û ew cardin şandine Îngîltereyê. Dema ji balafirê peyabuye, ji aliyê polîsên Brîtanî ve hatiye girtin. Ahmet li Brîtanya ji tê darizandin û ji endametiya El Kaide yê hikûm dixwe.

Servîsên saloxdariya Brîtanî MI5 û MI6, ji ber sedemên strûktûrî nikarin bersiv bidin pirsên David Davis. Lê hikumetê, gelek caran dabû xwuyakirin ku tu eleqeya van serwîsan bi êşkenceyê re nîne. Di pêvajoya dozê de jî, dozger giringî nedabû gelek iddiayên Rangzieb Ahmed.

## Zanistê têkiliyên navnetewî Prof. Zunes:

# DYA, Kurdan ji bo berjewendiyên xwe bikartîne

**Hawar Ebdulrezaq**

**Hewlêr (Rûdaw) –** Zanistê zanyariyên siyasî û têkiliyên navnetewî li Zanîngeha San Franciscoyê Stephen Zunes demekî dirêj lêkolînerê siyaseta derve ya Amerîkayê bû û li Enstîtuya Lêkolînên Siyasetên Derve û li Navenda Navdewletî ji bo Nakokiyên Şerê Sar de xebitiye. Wî di sala 2003an de pirtûkekî li ser nakokiyên Rojhilata Navîn bi navê "Siyaseta Amerîkayê ya Rojhilata Navîn û rêbaza terorê" nivîsand. Stephen Zunes çend caran serdana Rojhilata Navîn ji kiriye û herêmê ji nêz ve nas dikê.

Stephen Zunes dibêjê ku di çapemeniya Amerîkî de di derbarê hilbijartinên Kurdistanê de kêm tişt tên belavkirin. Ew dibêje Amerîka piştevaniya lîsteyekî Kurdistanê nakê û li gor wî ya giring ji bo Amerîkayê ne piştevaniya lîsteyekê ye, azadbûn û qanûnîbûna hilbijartinê ye. Zunes herwiha dibêjê ku çiqas hikûmeta Obama ji ber gotegotên di derbarê gendelî û bêdengkirina opozîsyonê di nav hikûmeta PDK`ê û YNK`ê de dilgîran bê jî, ew nayê wê wateyê, ku Amerîka piştevaniya opozîsyonê li Kurdistanê dike. Li ser iddiayên ku hikûmeta Obama ji ya George Bush bêtir giringiyê didê hikûmeta Malikî, Zunes dibêjê ku tiştê sereke ji bo Washingtonê bidestxistina aramiyê ye û wiha berdewan dike: "Amerîka dixwaze hikûmeta navendî serkeftî be. Ne ji ber serkeftina Malikî piştivaniya wî dike. Amerîka piştevaniya her hikûmeteka Îraqî dike, ku hevpeymanê wê be. Wekî din metirsiya vê jî heye, ku dewleteke Kurdî ya serbixwe ava bibe, an jî şer li ser navçeyên li derveyî Herêma Kurdistanê û derdora bajêrê Kerkûkê derkevê û ziyanê bighîne hikûmeta navendî."

Li gor Zunes Obama jî bo ku Tirkiye aciz nebê, tenê piştgiriya otonomiyeke teng ji bo Kurdan dike: "Tevî ku Josef Biden yê cîhgirê serokê Amerîkayê piştevaniya Îraqek federal, ku hikûmeteke nivserbixwe ya Kurdî têde hebe dike jî, lê Obama di wî warî de gelekî bi tirs piştgiriya otonomiyeke bi sînor ji bo Kurdan dike. Obama naxwazê gav bên avêtin, ku bibin sedema acizbûna Tirkiye û çêbûna şerê navxwe li ser çarenûsa navçeyên bi pirsgirêk yên nêzîkî bajarê Kerkûkê.

Li ser siyasetekî aşkera ya hikûmata Obama di derbarê Kurdan de Zunes di wê baweriyê deye, ku heta niha siyaseteke Amerîkî ya zelal li himberî Kurdan nîne: "Bi giştî Washington piştevaniya otonomiyê ji bo Kurdan di warê çandî û siyasî de dikê, lê ji bo Amerîkayê pêwîst e ewlehiya ser sînoran û têkiliyên derveyî di bin kontrola Bexdayê de bin û herweha hatina jî çavkaniyên xwezayî ji were dabeşkirin.

Zunes li ser dostaniya Kurd û Amerîkiyan reşbîn e û li gor baweriya wî eger rojekê Amerîka neçar bimînê ku ya piştevaniya hikûmeta Malikî yan jî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê bike, Amerîka wê tenê berjewendiyên xwe li ber çavan bigrê: "Herwekî dîrok jî dide xuyakirin, Amerîka Kurdan tenê ji bo berjewendiyên xwe bikar tîne û di rastiye de gelekî guh nade wan. Eger Amerîka bixwazê di nav welatekî de tevlîheviyê bi hikûmeta navendî dirust bike û di nava sînorên wî welatî de Kurd hebin – wekî niha li Îranê û hin caran di Îraqa serdema Saddam de – ew piştevaniya xebata Kurdan dike. Lê belê dema bixwaze hikûmetekê bihêz bike – wekî niha li Îraq û Tirkiyê – Amerîka li dijî xebata Kurdan derdikevê. Ji ber vê yekê heta ku hikûmeta Îraqê hevpeymanê Amerîkayê bimîne, ewê di dawiyê de piştevaniya hikûmeta Îraqê bike û ne ya Kurdan. Hikûmeta Obama wekî hikûmetên din yên Amerîkayê dixwaze desthilatdariya xwe li Rojhilata Navîn berfirehtir bike, lê wek ku xwiya dike ew ji bo bir û hizrên nû vekirîtir e."

Li gor Zunes hikûmeta Obama ji aliyekî ve di derbarê herêmê de xwedî zanyariyên baştir e, ji aliyê din jî bi awayekî baldartir nêzîkî daxwaziyên gelên Îraqê dibê û ji desthilatdariyên berî kêmtir piştevaniya helwestên leşkerî dike û aligirê çareseriyên demdirej e.



# Almanên YXK'yî: "Polîs me dişopînin"

**Zeki Özmen**

**Marburg (Rûdaw)** - Arno-Jermaine Lafin ciwanekî Alman e. Ew li bajarê Celle mezin buye. Ev bajar bi taybetî bi hebûna gelek Kurdên Ezîdî yên lê dijîn tê zanîn. Li gora hinek çavkaniyan li vî bajarî û derdora wê derdora 5 hezar Kurdên Ezîdî dijîn. Ew cara yekem di dibistana serateyî de piştî êrişeke nijadperestî ya devkî ya li ser şagirteke Kurd ya di pola wî de peyva „Kurd" dibihîse. Bi vî awayî ji gotinên keçikê fêm dike ku Kurd ne Tirk in û civakeke di bin zextan de ye. Herwiha di dema beşdarbûna hinek projeyên wekî yên alîkariya spartekan de êdî têkiliyên wî bi awayekî dîrekt bi Kurdan re çêdibe.



Ew niha xwendekarê Zanîngeha Marburgê yê beşa Siyasetê ye. Herwiha ew li heman zanîngehê bi awayekî aktîf di nava Yekîtiya Xwendekarên Kurdistan (YXK) de xebatê dimeşîne. Ew îsal çû Amedê û beşdarî Newroza girseyî bû. Bi gotina wî, wî vê carê tişta her dem dibihîst bi çavên xwe dît.

Me hem bi armanca nêzikbûna wî ya bi Kurdan re û hem jî naskirina xebatên wan yên zanîngehê hevdîtinek pê re pêk anî. Em bi bajarê lê mezin bûye û çavdêriyên wî yên wê de rê yên li ser Kurdan dest bi sohbeta xwe dikin.

Digel naskirina wî ya bi Kurdên Celle re jî, qet tevlî çalakiyên Kurdan nebûye. Ew civaka Kurd ya Celle wisa dinirxîne: "Li Celle têkiliyên civakî yên Alman û biyaniyan de di asta neyînî de ne. Kurdên Ezîdî yên wê derê di nava xwe de dijîn û têkiliyên wan yên bi derve re kêm in. Ji xwe Kurdên Ezîdî xwe li wê derê wekî civaka Ezîdî didin nasîn. Diçin serdanên hev, komeleya xwe û piraniya kirînê jî ji dikanên xwe dikin. Herçiqas car caran Alman tên vexwandin jî, lê belê têkiliyeke cidî ya mirov bikaribe bahsê bike nîne."

Piştî vê yekê, em derbasî beta xwe ya bingehîn dibin ango têkilî xebatên wî yên di nava YXK'ê de; Ew naskirin û tevlîbûna xwe ya YXK'ê jî wisa tînê zimên: "Nasîna min ya YXK'ê tesadûfî çêbû. Ji xwe hê ji Celle meraqa Kurdan bi min re mabû. Min rojekî plaketeke YXK'ê dît ku dihate gotin civîneke hevnasînê amade dikin û her kes vexwendiye. Ez jî çûm wir û wekî Alman ez tenê hebûm li wir. Bi rastî nêzîkbûn jî nîşanî min nedan. Wekî mînak piranî bi kurdî û tirkî diaxaftin. Û ez bi vî awayî ketim di nav de".

Ew bi vî awayî dibe endamê YXK'ê û em jê dixwazin bizanim ka çima YXK: "Di destpêkê de enterese bû lê ez niha bi çevekê din lê dinêrim. Kurd civakeke di bin zextê de ne. Lê dîsa dibêjim tesadûfî bû, belkî li şûna vira û biçûma dereke din jî. Ez Herwiha bizava Kurd jî zêde pêşketî dibînim û ev jî sedemekê din e."

Li Almanyayê yek ji rêxistina xwendakarên Kurd YXK ye. Derdora 500 xwendekarên Kurd di nav YXK'ê de kombûne. Li zanîngehên ku koma YXK'ê heye, bi serê xwe xebatê dimeşîne û şêweyên wê yê xebatê curbicur in. Taybetiya YXK'ya Marburgê jî ew e ku ji derdora 15 endaman ji wan nêvî Alman in. Em dixwazin bizanibin ka ev taybetî çawe derketiye holê. Arno wisa dibersivîne: "YXK'yiyên vê zanîngehê ne di wê baweriyê de bûn ku Alman jî yê bi wan re kar bikin. Lê wan fêm kir ku endambûna almanan ne tiştekî çewt e. Ez bûm endam, min hevalek din anî, hevalê din yekê din anî û wisa em bûn nîv bi nîv."

Di derbarê şêweyê xebatê û nêzîkbûna Kurdan û endamên din yên Alman jî ew vê yekê destnîşan dike ku ji xwe endamên wan yên Kurd gelek jê mentalîteya Alman di nava xwe de dihewînin, lê belê cudahiya nêzîkbûnên giştî ne ji ber cudahiya etnîkî yên cuda ne, lê belê bi awayekî xwezayî ji ber dîtinên cuda yên takekesan rû didin.

Ew herwiha me agahdar dike ku dê hewldanên wan yên hevkariya bi çepên Alman re di pêşerojê de gurtir bibin û behsa hinek projeyan dike. Li ser vê yekê em jî bi beşişîn dibêjinê gelo haya wî jê heye ku êdî Kurd wekî berê bi xweşbînî nêzîkî têgîna „çèpîtî" û bizavên vî rengî nabin. Arno jî dû hinek mitalekirin re vê bersivê dide:"Ez nizanim tenê di nava Kurdan de ev yek heye an ev nêzîkbûneke giştî ye… Çepîtî berê têgîneke ciwan ango mode bû. Lê ev yek ji hêla gelek kesan ve bi xerabî hate bikaranîn. Di nava Kurdan de jî belkî ji wê yekê ye ku bendewariyên wan pêk nehatin…"

Em bi bîra Arno tînin ku ji ber nêzîkbûna YXK'ê ya bi PKK'ê re her sal navê vê rêxistina ku ew endamê wê ye di rapora salane ya Daîreya Parastina Makezagona Almanyayê re derbas dibe û gelo ev yek astengiyê li pêşiya xebatên wan diderîne an na. Bersiva wî ya vê yekê jî bi vî awayî ye." Ji xwe divê mirov bizanibe dema mirov bi Kurdan re yan ji bo Kurdan xebatê bike, mirov li Almanyayê ji aliyê polîsan ve tê şopandin. Lê ez divê fikrê de me ku em ne tiştekê şaş dikin û ji wê yekê tiştekê em veşêrin jî nîn e."

Tirkîaxaftina girseyî ya di nava Kurdên bakur de ji nêz ve tê zanîn. Li ser vê em ji Arno pirs dikin ka di nava demê de ew bi kurdî yan tirkî çêtir fêr bûye. Lê ew her duyan jî kêm fêr bûye û dibêjê çend peyvên kurdî di nava axaftinên xwe de carnan bikar tîne.

Dema di nava birêveçûna sohbeta me de Arno siyaseta entegrasyonê ya Alman rexne dike, em jî dibêjinê ev aliyek e lê belê Kurdan bi xwe ji bo vê yekê çi kirine? Piştî hinekî fikirandin, dîsa behsa Celle dike û dibêje ji ku ji hêla Kurdan bi xwe ve nêzîkbûneke dûdilî heye û ji ber vê yekê ev xebat nagihin encamê.

Em dixwazin ji devê wî jî bibihîzin ka bi giştî çewtiyên Kurdan li Almanyayê çi ne. Ew çewtiyê bi wê yekê ve girê dide ku hewldanên Kurdan yên diyaloxdanîna bi Almanan re kêm in.

Em di dawiya sohbeta xwe de li ser gera wî ya bi boneya Newrozê ya li Bakurê Kurdistanê diaxivin. Tişta herî bala wî li vê gerê kişandî birêveberiyên herêmî yên DTP'ê ne. Ew dibêje ku dema mirov ji bajarekî herê bajarekê din, mirov ji binesaziya bajêr di cîh de fêm dike ka şaredariya wî bajarî di destê DTP'ê de ye an na.

Pirsa me ya dawîanîna sohbeta me li ser tişta ku li Kurdistanê ew herî şok kiribû çiye? Arno bi ken û wekî wan rojan dîse bijî wisa dibêje: "Tişta herî ez şok kirim zubul e. Pirsgirêka mirovan ya berterefkirina zubulê heye. Kurdistan ji alî xwezayê ve warekî wisa dewlemend e û mixabin ev yek niha nayê dîtin û li her derî çop tê belavkirin. Min li seranserî Kurdistanê tenê konteynereke çopê dît. Ew jî li ser girekî li Eskîfê bû. Belkî hinek car caran zubulê bavêjinê lê bawer nakim ku ew tê valekirin jî."



## Li Ewrûpayê dayîkên zarok zedê dibin

**Köln (Rûdaw)** - Li hinek welatên Ewrûpayê hejmara jinên ku temenbiçûk dibin dayîk, her ku diçê mezintir dibe. Li gor îstatîstîkan ferqekî mezin di navbera welatên Yekîtiya Ewrûpayê de heye. Li Brîtanyayê hejmara dayîkên temenbiçuk herî zede ye: Ji sedî 2,7 keçikên di navbera 15 û 18 salan an dibin dayik, anjî zaroka xwe ji ber xwe dibin. Li Almanyayê rêjeya keçikên ku di bin 18 saliya xwe de ducanî dibin ji sedî 0,7 ye. Di warê parastina kecan ji ducaniya nexwestî, welatên wekî Holanda, Îtalya, Danîmarka, Swêd, Slovênya û Kibris yên herî serkeftî ne. Li van welatan rêjeya keçikên ku bêdaxwaz ducanî dibin ji hezarî di navbera 5 û 7an deye.

# 'Li cîhanê eşkence kêm buye'

**Cenevre (Rûdaw)** - Serokê World Organisation Against Torture / Saziya Cîhanî Dijî Eşkêncê (OMTC) Eric Sottas got bi xetên giştî li cîhanê êşkence kêmbûbe jî hîn jî didome.

OMTC saziyeke ku li cîhanê dûvçûna êşkencê dike. Navenda vê saziyê li Bajarê Cenevre ya Swîsrê ye. Ev sazî di sala 1986an de hatiye damezirandin. 282 deveran şaxên wê hene û tevî rêxistinên sivîl yên cîhanê dixebite. OMTC bi saziyên wek Netewên Yekgirtî û Parlamena Awrûpa re dixebite û li gelek deverên cîhanê li dijî êşkenceyê projeyan dimeşîne. OMTC wek saziyeke bani an jî konfederasyona komel û rêxirawên dijî êşkencê kardikin e.

Serokê OMTC'ê Sottas dibêje, li cîhanê, di hijmara dewletên kû êşkence wek metodekî pêkdianîn kêmbûne: ''Welatên kû duh êşkence dikirin îro pêk naynin. Berî 20 salan li welatên Latîn Amerîka; Arjantîn, Şîlî û Brezîlya di lîsteya reş da bûn, Kolombîya û Meksîka ji welatên kû êşkence nedikirin dihatin zanîn, lê îro tam paşvêjî ya, vî çêbû ye."

Eric Sottas di derbarê xebata saziya xwe û rewşa êşkencê ya cîhanê daxuyaniyekî da Rûdaw'ê.

***OMTC çawa û kengê hat damezirandin?***

OMCT di sala 1986an de hat damezirandin û wek saziyeke serbixwe hat tecîlkirin. Em bi NGO'yên cûrbecûr re li dijî êşkencê xebatan dimeşînin. Rêxistina me di destpêkê de 480 KMM bijart û piştî wî ji nav van KMM 48 hebên ku krîterên wan li gor ramanên me bûn, me di bin çatiya OMCT de kom kir û me dest bi xebatan kir. Krîterên endamtiya OMCT'ê em dikarin di 3 kategoriyan de kombikin. Şertê me yê yekem ji dewlet û ji rêxistinên polîtîk serbixwe be. Ya duyem NGO gerek profesyonel bixebitin û agahiyên kû didin me pewiste rastbin. Ya dawîn em li şertên kû gerek hîç bêşdarî tû şerî û çalakiyên şiddetê nebûbe dinêrin. NGO'yên ku endamê menin, agahiyên ku ji me re dişînin em li ser niqaşan dikin û li ser navên wan bi dewletan re dikebin têkîliyan. Di destpêkê de hijmara NGO'yên me hindik bûn lê niha hijmara endaman gihîştiye 280 NGOyan.

***Di pratîkê de hûn çawa dixebitin?***

Em hersal, ji NGO'yen kû nûnerên me ne de, nêzîkî 6-12 kesên ku serî li me dane re alîkarî dikin. Di dema van xebatan de ji bo çareseriyê hin îdeayên êşkenceyê, pewiste, em bi lez bikevin nav tevgeran. Agahiyên ku digihîjin dest me di nav 24 sêatan de, temamên NGO'yên xwe û rayagiştiya cîhanê derheq vê êşkenceyê de agahdar dikin. Bi navê `servîsa qurbanên êşkenceyê` servîseke me heye. Em mexdurê êşkenceyê tavilê dernaxin dervayî welat, an jî ew zerarên ku dîtine em nikarin tavilê li wan vegerînin. Lê em tedawiya wan di nava demekî kirt de dikin. Li cîhanê 40 navendên me yên terapiyê hene.



***Îro li cîhanê rewşa êşkenceyê çawa ye? Mirov dikare bêje di vî warî de cihana me pêş de çûye?***

Îro li cîhanê di hijmara dewletên kû êşkence wek metodekî pêkdianîn kêmbûne. Welatên kû duh êşkence dikirin îro pêk naynin. Berî 20 salî li welatên Latîn Amerîka; Arjantîn, Şîlî û Brezîlya di lîsteya reş da bûn. Kolombîya û Meksîka ji welatên kû êşkence nedikirin dihatin zanîn, lê îro tam paşvêjî ya, vî çêbû ye. Îro li Arjantîn, Şîlî û Brezîlya di vî warî de pêşketinekî çêbûye. Lê li Meksîka û Kolombîya car carna buyêrên êşkenceyê çêdibin. Li Afrîqayê li derdora Gola Mezin mafê mirovan binpêdibin. Li Gîneyê û li Sîera Leoneyê jî rewşeke pirr xirab heye. Li Parzemîna Asyayê li Mayenmar û Bîrmanyayê jî rewş nebaş e. Rewşa herî xeter li Zîmbabwayê ye. Li Çînê di salên dawîn de piştî meydana bûyêrên Tîenenman'ê kû rêxistinên mafê mirovan zextan dan ser wan, rejîmê jî ji wê helwesta xwe dest berda. Îro girîngiyekî mezin dide mafên mirovan.

***Saziya ji bo berlêgirtina êşkenceyê çi dike?***

Di sazîya me de hin heyet tên avakirin û van heyetan em dişînin cîhê kû bûyêrê êşkencê pêk hatine kû bûyêrê li cîhê wî de bişopînin. Ez demek berê çûm Nepalê. Me şandekî jî şand Bolîvya yê. Ev heyet li welatên kû diçin, tevî komeleyên mafên mirovan îdîayên êşkencêyê bişopînin, girtîgehan zîyaret dikin û bi girtiyan re diaxifin, di derheqê rewşa wan de agahiyan digirin. Me li Uruguayê girtîgeheke zarokan zîyaret kir, rewşa jîyana zaroka ya xeter di cîh de me dît. Li ser wê rewşê wek raporek da hikûmeta wan. Hikûmeta Uruguayê ev rewş qebulkir û ji bo serastkirinê soz da.

***Ji Kurdistanê kes seri li saziya we dide?***

Belê ji Kurdîstanê gelek kesan serî li me dane. Bi taybetî ji Kurdên Tirkiyê. Em van ji nêzikve dişopînin. Têkîliyên me bi Komela Mafê Mirovan (İHD) re hene. Me gelek alîkariya serlêdanên Kurd û Tirkan kir. Ez neçûm Amed'ê lê gelek caran ez çûm Enqerê û Stenbolê. Derheqê mafên mirovan de li vederê hinek guhêrtinên erênî çêdibin. Lê ev nayê wê wate yê kû li vêderê her tişt sererast bûye. Cara dawî min li zanîngeheke İstenbolê semînerekî da. Li wê derê li hember gotinên min, profesor û xwendevan ecêb man. Ew axaftina ku min di wê civînê de kir, çend sal berê min bikra, wê min dersînor bikirina. Çend sal berê min behsa êşkenceyê bikira heman min ji Tirkiyê derdixistin. Rewş hatiye merheleya normal. Lê belê hîn jî rêyeke dirêj li pêşiya me heye.

***Saziya we bi awayeke eşkere li ser Tirkiyê çi bandor kiriye ji bo binpêkirina mafê mirovan bide sekinandin?***

Problemeke me ya bi Tirkiyê re ev e ku dadgehên wan gelek hêdî dixebitin. Mexdûrên êşkenceyê bi salan bi dadgehan re mijûl dibin. Ji ber van sedeman, di van demên paşîn de, Dadgeha Mafê Mirovan ya Ewrûpayê (DMME) serlêdanên mexdûrên ji Tirkiyê rasterast qebûl dike. DMME'yê berê digot; 'divê li Tirkiyê hemû rêyên hiqûqa hundirîn bê ceribandin, ger çareseri- yeke adil nehat dîtin, paşê werin cem me." Lêbelê ji bo Tirkiyê ev şert guhertin.

# Patasana û Ahmet Ümit




**Doğan Akhanlı**

**Köln (Rûdaw)** - Nivîskar Ahmet Ümit li Tirkiyeyê gelekî navdar e. Pirtûkên wî baş tên firotin. Ev romana wî "Patasana" sala 2000 bi tirkî hatiye çapkirin. Berî çand mehan bi zimanê almanî jî hat çapkirin. Pirtûka wî cara yekemîn 29 ê Nîsanê li Tiyatroya Berlîn-Ballhausê, li hemberî 300 kesî bi mûzîka Kurdan û Ermeniyan hat xwendin. Ji ber ku mijara romanê Ermenî û Kurdan alaqadar dike, muzîka Ermenî û Kurdî di ciyê rast de bû.

Mijar: Li kêleka Firatê nivîsarên kevnar yên Hîtîtan berî 2700 salî ji aliyê Arkeologan ve hatin dîtin. "Patasana" yên ku nivîsarên kevnar bi navê hukumdaran nivîsîne agahiyên ne fermî li ser dîrok, jiyan û qirkirinê digihêjîne me. Roman li ser bûyer û mijarên wan nivîsarên kevnar hatiye nivîsandin. Dema Ahmet Ümit roman dinivîsî 27 nivîsar hatibûn dîtin. Roman bi dîroka Hîtîtên kevnar destpêdike û bi kuştina miroveki ku li ciyê Lêkolînê ye berdewam dike. Ji gerillayên Kurd, heta musilmanên fundamentalist û Yüzbaşî Eşref gelek kes di bin gumanê de dimînin. Her ku roman peşve diçe, kuştin jî her pir dibin. Kuştinên bi vî awayî, qirkirina Ermeniyan tîne bîra mirovan. Patasana ne tenê romaneke "kirîmî" ye, nivîskar gav bi gav wek arkeologekî, siyaset û dîroka Tirkiyeyê jî di berhema xwe de derdixe holê.

***Tu jî bi nivîsên xwe wek arkeologan kar dikî?***

Metodên arkeolojî, dîrok û krîmînolojî weke hev in. Herdû li pey rastiyê digerin. Lê karê arkeolojî pir zehmet e. Ji ber ku zelalkirina bûyerên 1000 salan berî niha ne hesan e. Erê hûn rast dibêjin, min di wê romanê de mîna arkeologan nivîsî. Min xwest ku ez di romana xwe de şaristanî û Xirabiyên dîroke bînim ziman. Berî her tiştî, armanca min romaneke bi şewq û zewq bidim xwendevanên.

***Di romana te de lîstikên qirêj, kuştin û şer hene. Rêvebira grûba arkeologan Esra, jineke çepgir, modern û Kemalîst e. Li dijî gerîllayên Kurd, Esra bi efserê zordest Eşref re hevkarî dike. Bi rastî, ji mijara romanê û realîteya Tirkiyeyê wek hev in. Alîkariya demokratan, rewşenbîran li gel Ergenekonê îro mînakeke baş e. Gelo hevkariyên wisa demokrasiyê xirab nakin?***

Eger hûn romana welatekî binivîsînin, divê hûn qehremanên romanê ji wî welatî hilbijêrin. Li dinyayê hemû paradigma tên guherandin, bi piranî jî yên idyolojiyên çep. Lê belê, partiyên Tirkiyeyê her diçin ber bi nasyonalîzmê ve û dij emperyalîzmê ve diçin. Îdeolojiyên partiyên çep, divê ne tenê piştgirên EU'yê bin, gerek e piştgirên aşîtî, rizgarî û pirpareziyê jî bin.

***Di grûba arkeologan de, hemû Tirk difikrin ku Arkeologê Alman Bernd, 'Naziyekî pozbilind e.' Çima? Ji ber ku jina wî Ermenî ye?***

Mesela Ermeniyan bûye gengerî. Qehremanên romanê jî wek reyalîteya xwediyê fikrên cuda ne. Yûzbaşî Eşref û Esra qirkirînê inkar dikin û Bernd jî meseleya rast tîne zimên. Lêbelê, mîna hemû Ewrupiyan ew jî, ji jor de, li mirovên Rojhelatê dinêre. Herdu jî şaş in. Bernd meseleya durust dibîne, lê metoda wî çewt e. Weke Hirant Dink jî digot; bi vî awayî meseleya Ermeniyan çareser nabe, xesarê dibîne. Romanên baş bersivan nadin, ji ber vê yekê, ez ji meseleyê bi pirsan tînim zimên.

***Ew mêrkujî jî wek qirkirina sala 1915 an tê pêkanîn. Mêrkuj di bergiriya xwe de kuştina Ermeniyan wek tiştên ideolojîk nîşan dide û dibêje: "Dijwarî bi dijwariyê tê çareserkirin". Gelo, eger mesele ideolojîk be, çima ew mêrkujî dîsa li ser axa bav û kalên Ermeniyan tê meydanê?***

Sedemên mêrkujiyê gelek in, ne tenê ideolojîk û siyasî ne. Wekî din jî, mêrkuj di bin bandora wê zordestiyê de ye ya ku bi ser malbata wî de hatiye. Lê berî her tiştî, mêrkuj bi wan kuştinên xwe dixwaze bala mirovên bêxem careke din bikşîne ser qirkirina Ermeniyan (1915). Ew baş dizane ku balkêşî bi vî awayî şaş e. Loma, gotina Patasana "Di dema zordestan de ez çavsorek bûm" tîne ziman.

***Ermenî û Kurd her dem wekî "pirsgirêk" tên dîtin. Serokê Înstîtuya lêkolînên qirkirinê li Bochuma Almanyayê, behsa " pirsgirêka Tirkan" dike. Wisa rast e?***

Di dîroka hemû gelan de rûpelên wisa reş hene. Gunehê qirkirinê ne di stûyê mirovan de ye, di stûyê rêvebiran de ye. Eger em wisa bifikrin, ew demokrat û aştîxwazên ku bi destên Naziyan hatin kuştin jî, di bin barekî giran de dimînin. Mirov dikare van probleman bi pîvanên universal çareser bike.

***Gelo zor bi zorêrakirin ne metodên Marksist-Lenînistane?***

Ew rast e. Lê ev ne fikra min e. Zor zorê ranake, berevajî wê, zor zorê pir dike. Di vê wateyê de, Gandî mînakeke taybet e. Eger mirov bi zorê biçe ser armanca xwe jî mirov paqij namîne. Zordestî û kuştin karên qirêj in. Divê em wek mêrkujan nebin.

***Pir caran tê gotin ku "dîrok nayê guhertin". Lê Walter Benjamîn dibêjê "dîrok dikare bê guhertin". Patasana jî, berhemeke van fikran e?***

Helbet, mirov dikare rê ya dîrokê ji bo jiyaneke baş biguhere. Bi rastî, Pastana li dijî zordestî, koletî û xwînrijandinê ye. Siyaset û huner ji hev cuda ne. Siyaset hesabê berjewendiyan dike, huner jî hesabê wijdan. Ji ber vê yekê, berî guhertina dîrokê,divê ruhên mirovan bê famkirin.

***Tê gotin ku tu di darbeya 12 îlona 1980 î de, ligel partiyeke şoreşger, çalak bûyî. Destberdana te ji ber şikestina xeyalên te bû, an ji ber nivîskariya te bû?***



Nivîskariya min, gava ku ez ji bo perwerdehiya marksîzmê çûbûm Moskoyê, destpêkir. Gava sosyalîzma reyal pûç bû, baweriya min bi marksîzmê pûç nebû. Lê, min rastiyek dît. Ez bi siyasetê nikarim fikrên xwe serbest bibêjim. Axir, ez ê di wêjeyê de serbesttir bînim ziman. Karê nivîsandinê dihêle ku ez bi awayekî berfirehtir li dinyayê binêrim.

***Li Tirkiyeyê wek nivîskarê "krimî" li te dinêrin. Tu bi vê nêrînê bextewar î?***

Çawa dinêrin bila binêrin. Tiştê girîng ji bo min asta nivîsê ye. Hinek bi çavê romana dîrokî, hinek bi çavê feylosofî, siyasî û krimî dinêrin. Hemû jî rast in. Mesele memnûnkirina xwendekaran e.

## Li ser rêçikên Karl May

# 'Nameyên ji Kurdistanê'



**Köln** - Piştî derbasbûna şêst salî di ser çapkirina pirtûka Karl May ya bi navê "Ber bi Kurdistanê ve" endezer Bernard Wittmann, ji Düsseldorfa Almanyayê, di rê û rêçikên Karl May re, di sala 1954an de diçe Başûrê Kurdistanê û deh salan li wir kar dike. Wittman di nameyên xwe de, ku ji keça xwe re nivîsîne, car caran behsa hilandina çiyan, çêkirina piran dike. Yek caran jî bahs dike ku çawa piştî baraneke xurt, lehî bi ser wan de hatiye; hemû çekiriyên wan di nava du seetan de xerab dibûn û rêyên wan dihatin girtin.

Kelekela germê (di bin sîyê de 57 derece), serma wek kêrê û ziwahiya ku dexil dişewitand çokên Kurdan nexistin erdê. Lê li zivistanê gelek cih hene berf berenberî 5 metreyan dibarî û têkiliya wan herêman bi dinyayê re dihate qetandin. Car caran 1500 kes, 6000 bizin-mîh, 1200 ker, 800 ga û 300 hesp neçar diman. Di hal û hewalên wisa de alîkariyek ji derve gelek girîng bû.

Herçiqas ji aliyekî ve problemên erdnîgarî û ji aliyekî ve jî qirkirina Kurdan bi destên leşkerên Îraqê di salên 1958 û 1963an de karê wî zehmet kiriye, lê dîsa jî Wittman karê xwe "Avakirina Kolone Bakur" bi mora Alman "Made in Germany" bi dawî kiriye.

Hemû kes bi „Almanî" kêfxweş bûn. Wittman jî mêvandariya Kurdan pir caran tîne ziman. Ji ber ku wî bi Kurdî û erebî dizanî, pir hesan têkilî bi beg, bazirgan, karker û rençberan re çêdikir. Bajarê Halabçê bala Wittmann gelek kişandiye. Li gor gotinên wî Halabçe bajarê Aşîtî, helbestvanan, nivîskaran û aliman bûye. Ew bajarên ku Wittmann gelek caran bahs dike, di sala 1988an de, di Adarê de, bi gaz û bombeyan hat hilweşandin û 8000 kes hatin qirkirin.

Piştî Wittman Kurd baş naskirin, hezkirina wî jî bi vî awayî li ser Kurdan û Welatê wan hîn zêdetir bû. Ango Witmman digot: "Serxwebûn mafê Kurda ye." Problemên Kurdan yên siyasî yên ku berî 50- 60 salî Wittman anîn ziman îro jî berdewam dikin. Celal Talabanî di axaftina xwe de, rewşa Kurdistanê ya siyasî û civakî wisa anî ziman: "Ne Kurdistan îro Kurdistana dema Karl May e, ne jî gelê Kurd gelê berî 60 salan e. Li bajaran, qatên civakî yên mîna Burjuwa û karkeran peyda bûne, îro jî demokrasiya parlamenterî fonksiyona xwe bi kar tîne." Gelek qanûnên ku hikumeta Kurdistanê bi rêxistine, rê ya demokrasiyê berfireh dikin. Mînak: "Kuştina ji bo namûsê„ gelek giran tê cezakirin. Wekî din jî zewacên bi zorê, her çiqas li gundan hebe jî, bi fermî hatine qedexekirin. Mafên jin û mêran berenberî hevin.

Nameyên Wittmann ji Kurdistanê, di pirtûkekê de hatine çapkirin, weke gotin û dokumanên herî baş tên nirxandin. Piştî Kurdistanê, Wittmann li Îmaratê kar kir û li wir, di sala 1968an de çû ser dilovaniya xwe. Li Îmaratê, ji bo mirina Wittman, emîrê Ereban sê rojan, bi awayekî fermî, weke rojên şînê destnîşan kirin.

## Dûrbîn



Helîm Yûsiv

# Zarokekî û du ziman

Zimanê yekem, zimanê dê, yê malê, yê xwişik û bira û zarokên cîranan e.

Zimanê duyem jî yê mamoste, polîs, karmendên dewletê ‚muxaberat' û pirtûkên pîroz e.

Ew cara yekem bû, ku di şeş saliya xwe de, ew zarok ji malê derdikeve û li dîwarekî asê rast tê. Bavê wî bi destê wî girtibû, birayê wî yê mezin, ji bo wergerê, dabû benda xwe û diçû ber bi kelehên zimanê duyem de. Bavê wî dixwest navê wî di dibistana bajêr de qeyd bike. Ji nişkê ve xwe dît ku li ber karmendekî bi taxim û bi zimanekî ku tênagihêje dipeyive. Wisa birayê wî jî bi heman zimanî bi karmend re diaxife. Wî zarokî dizanîbû ku navê wî tê gotin û tiştin li derdora wî diqewimin, lê nizanîbû çi tê gotin.

Ew kêlîkên ku di mala dewletê de qedandin serî û giyanê wî xistibûn nav veciniqandin û matmayîneke mijokî de. Pêre jî di dilê wî yê biçûçik û sade de tişteki dişewitî. Li derdorê jî bêhna mirinekê, pêjna şinekê û dengê çivîkeke kuştî tevlihev dibûn û bi ezman de difûriyan.

Ew zarokê şeş salî, yê veciniqî û matmayî ez bûm.

Ew bajar, Amûdê bû.

Ew bêhna ku nayê jibîrkirin, bêhna qedexekirina zimanê dayika min bû.

Ew çivîka kuştî jî, dilê min bû.

...

Zimanê yekem, zimanê giyan, yê hestan, yê jineke nexweşik û birîndar e.

Zimanê duyem, zimanê dibistan û zanîngehan, yê aqil û mejî ye, yê dewleta xweşik e.

Ew zarokê şeş salî mezin bibû. Di dibistan û zanîngehan de, bi zimanê dewleta xweşik pirtûk, rojname û kovar dixwarin. Di nav salan de çûbû, muyên spî hêdî hêdî diketin nav porê dilê wî. Ji bo agir û şewatên canê xwe sivik bike, ber bi rûpelên spî de dibeziya û rûyên wan reş dikirin. Çîrokên zimanê qedexe, evîna qedexe û jiyana qedexe dinîvisandin. Bi hibrekê ku rengê xwe ji reşayiya şevê girtibû, her şev dinîvisand û bi roj jî radiza. Ne hewcedarê ronahiya rojê bû. Xwe dida ber ronahiya agirê ku di giyanê wî de dadayî mabû. Dawiya şeveke zivistanê, xwe li ser erdê dirêjkiribû û dinîvisand. Diya wî di ser serê wî re sekinî û jê pirsî:

-Tu çi dinîvisînî lawo?

Ji nişkê ve naskir ku ew bixwîne jî, wê diya wî nizanibe çi nivîsandiye. Ew cara duyem bû ku di jiyana xwe de vedicinigqe û di nav mija matmayînê de dimîne. Bi dilekî şikestî li rûyê diya xwe nerî û ji xwe şermkir.

Di sîhsaliya xwe de naskir ku bi mifteyeke şaş dixwaze deriyê giyanê xwe veke û fahmkir ku wî ji şeş saliya xwe de ew mifte wendakiriye.

...

Mîna zarokekî şeş salî ku diya xwe wendakirbe û ji nû ve bibîne, roja din, ew mêrê şikestî vegeriya ber destê dayika xwe. Mifta deriyê jiyanê ji dest wê girt. Destê wê maçkir û bi çavekî, ji qehran re, digiriya û bi çavên din jî, ji kêfan re, dikeniya.

Ew giriyê wî yê dirêj û ew kenê wî yê bilind, bûn tîp, bûn peyv û wisa jî bûn çîrok û roman.

Belê, ew mêrê şikestî yê ku heta niha bi dilê wî zarokê şeş salî dinîvisîne, ez im.

...

Sibe, li heman bajarî û li heman welatê ku ez jê têm, wê zarokekî din bibe şeş salî. Wê malbata wî jî bixwaze ku biçe bixwîne û mezin bibe.

Wê dîsa zimanê xwe yê birîndar li malê bihêle û bi zimanê mamosteyan veciniqe û di nav mija matmayînê de bimîne.

Tirsa min ew e ku piştî çil salî, Kurdekî din bê, li hember we bisekine û ji we re bahsa kuştina zimanê dayika xwe bike.

# Sûriye: 'Kuştinên ji bo namûsê' êdî sûc e!



**Şam (Rûdaw) –** Li Sûriyêyê heta niha kirdarên cinayetên namûsê bi pirranî bê ceza xelas dibûn. Yasaya ku heta niha bersûc ji ceza diparast, di 1ê tirmehê de hat guhertin. Ji niha û şûnve welatiyên Sûriyeyî ku ji ber cinayetên namûsê sûcdar bê ditin, wê herî kêm bi du salan bên cezakirin.

Yasaya hejmara 548an ya qanûna ceza, ku heta niha kesên bi cinayetên namûse sûcdar ji ceza diparast, hat guhertin. Bi vê guhertinê kesên ku destê wan di cinayetên namûsê de hebê, wê herî kêm bi du sal zindanê bên cezakirin. Rexistinên mafên jinan û parezvan ev demekî dirêje bû ku rakirina wê yasaya navborî pêşniyaz dikirin. Parezer û parêzvanê mafên jinan Daad Mûsa, ku bi salan e ji bo mafê jinan têdikoşê, ev pêvajo wiha nirxand:

"Ev ji deh salan bêtire rêxistinên jinan pêşniyara rakirina vê yasayê dikirin. Ji ber ku vê yasayê dijwariya li dijî jinan diparast. Hikûmeta Sûriyê di dawiya sala borî de bi 'Komiteya Pirsên Malbatî' re konferansek lidarxist û di vê konferansê de rakirina vê yasayê hatibû niqaşkirin."

Cinayetên Namûsê Meşrû ne

Tiştê ku di derbarê vê yasaya navborî de berbiçav dibê ji ew e ku tu pêwendiya wê bi şeriata Îslamê ve tune ye. Ji ber ku ew yasa, ku ji ber cinayetên namûsê tu ceza ferz nedikir, di dema ku Sûriyê di jêr desthilata Fransayê de bû, ketiye dewrê. Şarezayê ilmê Îslamê û parlamenterê Sûriyê Muhammed Habaş got ku ew yasa sê stûnên bingehîn yên qanûna Îslamê, yanî ya şeriatê binpêdikin û wiha axifî:

"Ya yekem ev yasa kuştina ji ber zinê an ji têkiliyên cinsî yên berê zewacê wekî kareki rewa dibînê. Quran ji kuştinê wekî ceza bilêvnakê. Ya duyem ji ev yasa sûcdarkirina bi zinê û têkiliyên cinsî yên beriya zewacê bêyî ispat wekî buyerêkî bûyî qebûl dike. Ev qedexeye. Suç divê li gorî hukmê Şeriatê neyê cezakirin. Ya sêyan ji dinê Îslamê destûrê nadê tu kesî, ku bi serê xwe edaletê bicihbikê."

Naxwazin Yasa Buguhure

Disa ji gelek Serokên Olî dixwazin ku yasa neyê guhertin û biminê. Habaş li ser vê yekê wiha axaftinên xwe berdewam dike: "Divê ez wêyekê ji bêjim ku Serokên Olî yen ku piştgiriya hewlên me nakin ji hene. Tirsa Serokên Olî ji wê yekê ye, ku eger yasa bê rakirin zinê û têkiliyên cinsî yên berî zewacê zêde bibin." Disa ji rêxistinên mafên jinan guhertina yasayê têr nabinin. Parêzer Mûsa nêrînên xwe wiha tînê ziman:

"Ev biryarnamewê yasayê ji binî de ranakê, lê têrê hatiye guhertin. Yasaya heta niha kesên bi cinayetên namûsê têkildar ceza nedikir. Yasaya nû herî kêm du salan ceza ferz dike."

Parêzer û parêzvanê mafê jnan vê rewşê wekî pirsgirêkî giştî, ku bi wekheviya Jin-û-Mêr ve eleqedar e, dinirxinê. Nimûneya vê rewşê ji Mûsa wiha berçav dike: "Li gor yasaya ceza mafê jinê heyê, eger merekî zinê kir, ew şikayeta wî bike. Lê jin divê ispat bike, ku zinê di malê wê bixwe de hatiye kirin. Eger mêr têkiliyên cinsî li derveyî mala xwe pêk bînê, jin qet nikarê dozê li dijî wî vekê"

# Li dijî desthilata zilaman pergala hevserokatiyê

**Stenbol (Diha) -** Bi armanca afirandina firsenda wekheviyê ji bo jinan ya di siyasetê de û zêdekirina rêjeya temsiliyetê di sala 2006an de Partiya Civaka Demokratik (DTP) di asta navendî de pergala hevserokatiyê dabû destpêkirin. DTP niha ji bi heman armancê li bajaran jî pergala hevserokatiyê bi cih tîne. Hevseroka Rêxistina DTP'ê ya Stenbolê Çiğdem Kılıçgün Uçar diyar kir ku pergala hevserokatiyê mewziyek hatiye bi destxistine û lazim e partiyên din jî minak bigirin.


(Wêne: Diha)

DTP'ê ku ji damezirandina xwe heta niha di warê beşdariya jinan a siyasetê de bi hîstiyar e, xebatên xwe yên di vî warî de berfireh dike. DTP'ê ku bi armanca vekirina pêşiya jinan a di siyasetê de û zêdekirin rêjeya temsiliyetê di sala 2006'an de di asta navendî de pergala hevserokatiyê dabû destpêkirin, niha ji bi heman armancê li bajaran jî pergala hevserokatiyê bi cih tîne. Di asta bajaran de jî pergala hevserokatiyê yekem car li Stenbolê pêk hat. Di 2. Kongreya Asayî ya Rêxistina DTP'ê ya Stenbolê de Mustafa Avcı û Çiğdem Kılıçgün Uçar ji bo hevserokatiya bajar hatin hilbijartin. Di warê siyaseta Kurd û siyaseta Tirkiyeyêde jî yekem car ev pergal jî hêla DTP'ê ve hate bikar anîn.

'Sengerên ku bi têkoşîna jinên Kurd hatine qezençkirin'

Hevserokê Rêxistina bajarê Stenbolê Uçar anî ziman ku DTP dinava politakayên rojane, rol nade jinan nêzîkatiyek ku jina tevlî jiyana civakî û tevlî siyasetê bike heye û dazanin ku vê pergalê ji bo jinan li gorî pêvidiya hemana tuzika partiyê ku cudahiya pozitîf têde cih digre, tê dîtin. Uçar, diyar kir ku hevserokatiyê wekî mewziyek gelekî giring dibîne û ne wekî mafekî ku bi carekê hatiye bi dest xistin, ev yek wekî berhemên têkoşîna jinên Kurd a bi salan nîşan da û dazanin ku ji ber tiştekî yekem pêk tîne jî gelekî bi heyêcan e.

'Em dê bi nasnameya jinan tevlî siyasetê bibin'

Uçar, destnîşan kir ku jinanan têne bi pirsgirêkan tînin rojevê û dazanin ku lazime wan bi raman, berhem û afirandiniyê wan û tiştên ku didin civakê bên ditin. Uçar, derbirî ku jî niha şunde armanç dikin ku jinan bi nasnameya wan hildin nava siyasetê û her wiha hinbûnên siyaseta kevn ku jine wekî "Hêza alîkar" dibîne rexne kir û wiha got: "Ji bo wekheviya jin-zilam bê çêkirin û jin di mekanîzmayên biryaran de cih bigrin dê li nav tevgeriyê de demokrasiyê hîn pêştir bixe. Hijmara jinan jî nîv hijmara civakê zêdetir e ku bi awayekî çalak tevlî siyasetê bibin dê civak hîn pêştir bikeve.

Uçar, anî ziman ku armanca wê ya herî mezin ew e ku bibe şopdarê jinên ku di siyasetê de nûjenî avakirine ye û pergala hevserokiye jî wiha vegot: "Di hevpariya peywîr û rayê de, pêşî li yekdestiya desthilatdariyê digre, berfirehiyê dide afirandin û bingeha siyaseta jinê bi hêztir dike. Ev pergal, mudexaleya jinê ya demokratîk a yekdestdiya desthilatdariya zilam e." Uçar, derbirî ku pergala hevserokiya bajar yekemcar li Stenbolê pêk hat gelekî heyêcan çêkiriye û jî jinan jî gelekî piştgirî danê û wiha pêde çû: "Jin dê bi rengê xwe bi awayekî çalak tevlî siyetê bibin û dê derxê holê ku siyaset ne karê 'mêran e' û dê siyasetê jî feraseta desthilatdariyê jî dûr bixe û bike karê civaka demokratîk."

# Xetene dibe sedemê sarbûna ji seksê



**Ferman Çomanî**

**Ranye (Rûdaw) –** Li Kurdistanê jinên ku tên xetenekirin ji seksê sar dibin. Li gor pisporan hejmara jinên wiha gelek in û ev pirsgirêk tendurstiya ciwakî tehdîd dike.

Jîneke 27 salî, ku navê xwe neda, dibêje ew tûşî sarbûna seksê buye û sedema wê jî xetenekirin e: "Xetnekirin buye sedemê sarbûna min ji seksê. Herwiha di zarokatiyê de nedihiştin ez gotinên dilê xwe bêjim. Zor caran di dema axaftinê de dihatim şikandin. Ez bawer dikim ku her ev yek buye sedem ku di dema seksê de sarbim."

Ligor pisporên tendurustî û derûnnasiyê, xetnekirina keçan di dema zarokatiyê de, wan tûşî tirs û sarbûna seksê dike û dibe sedem ku di dema cotbûnê de negehijin asta lezzetê. Sarbûna seksê ku zor caran li cem hevseran dibe girêkeka derûnî, yek ji wan nexweşiyane ku giriftên civakî veke, xiyaneta hevserî, telaq, zewaca dûbare ûhwd li pey xwe dihêle. Ew nexweşî di nav herdu regezan de heye, lê ligor gotinên pijişkan ewqasî ne giring e û çareserî jêre heye.

Rêbwarê 29 salî ku pirsgirêka hevjîna wî heye, bawer dike ku jin giringiyê didin seksê. Lê çendîn tişt dibin sedem ku di dema seksê de sarbin: "Keç di zarokatiyê de tên tirsandin û seksê weke tiştekî qedexekirî bi wan didin nasandin, ji xeynî wê jî keç li jêr navê olî tên xetnekirin. Ev jî dibin sedema sarbûna seksê licem jinan." Navbirî diyar kir ku wî gelek hewldaye ku liser wê pirsgirêkê zal be: "Zor caran di dema şabûna bi jina xwe re em bi hevre hevpirsiyê dikin. Di hevpirsinê de hertim ez destpêkerim û hevjîna min bi başî guhdariya min dike."

Ew hevserên ku ji Rûdawê re axivin, pirani di wê baweriyê de bûn ku xetenekirin yek ji sedemên bingehîn yên sarbûna seksê ye. Lê ligor hin pisporên nexweşiyên jinan bandora xetenekirinê li ser seksê nîne. Dr. Etiye Heme Seid, jinên xetnekirî yên welatê Sûdanê weke mînak tîne: "Ew jinên ku li Sûdanê hatine xetenekirin, li hemû jinên din yên Sûdanî di peywendiya bi zilaman de pir germ in. Eger zilam pêre lihev bê, xetene li ser jiyana xelkê di warê seksê de bandor nake."

Hevjîna Ehmed Xidirê 36 salî jî tûşî sarbûna seksê buye. Ev neh sal in ku Ehmed zewiciye. Di wê derbarê de wiha dibêje: "Civaka Kurdî berteng û girtî ye. Fikr û kultûra Îslamê li ser zal e. Keçên xwe xetene dikin an nejdilî wan didin kurekî ku jê heznake, ev hemû sedemên giring in. Bi awayekî berdewam bi hevjîna xwe re hevpirsiyê dikim. Ji bo di dema cotbûnê de bi hevre bigijin asta lezzet û orgazmê." Lê ev zilam di wê baweriyê de nîne ku tu peywendiya xiyanetê bi sarbûna seksê re heye. Ji ber ku ji wê sarbûnê re çareserî heye: "Ez tenê ji bo seksê nezewicim e. Di navbera me de hezkirin heye. Jiber wê pêwist nake mirov berê xwe bide ladan û xiyanetê."



# Keçên Silêmanî ji perûkan hezdikin

**Lenya Mehmûd**

**Silêmanî (Rûdaw) -** Ji bo bala hevalên xwe bikişîne, di nav saleki de Sazgarê 10 porên çêkirî kirîne.

Sedema meyldariya keçan berbi bikaranîna porên çêkirî vedigere çavlêkirin û hevrikiya di navbera wan bi xwe de. Sazgar dibêje: "Porê min kirt e. Ez jî porê dirêj hez dikim. Ji ber wê ez porê destçêkirî bikartînim."

Sazgar Mihemed a xwendevana Zaningeha Silêmaniyê dibêje: "Hevalên min her roj bi rengekî cilan li xwe dikin û xwe dixemilînin û modêla porê wan her gav tê guhertin. Lewra ez jî dixwazim wek hevalên xwe pir ciwan û xweşik, bêm xuyakirin."

Niha modêla bikaranîna porên çêkirî ku wek perûkê tên nasin, di nav keçên Silêmaniyê de bi rengekî berfireh belav bûye û dikandarên firotina alavên ciwankariyê jî amajê bi wê yekê didin ku rojane hejmareke zêde jî keçan bo kirîna porên çêkirî rêya xwe bi wan dixin û bazara porên çêkirî, niha germ bûye.

Arezû keçeke 18 salî ye. Ew li gel dayika xwe di firoşkereke alavên ciwankarî û xemilandinê de, bazara porên çêkirî dike û balê dikişîne ser vê yekê ku bi sedema pir bikaranîna alavên zuwaker, muyên porê wê lawaz bûne, lewma hatiye bazarê, da ku perûkekî bikire: "Bikaranîna perûkan ne wiha hêsan e û divê keç bi dûv de bigere û bizanibe kîjan orjînal e."

Ligor Xelat a 28 salî giringiya perûkan vedigere vê yekê ku ew herdem bidest dikevin û dibêje: "Keç saetekê pêve mijûl nabin, rast nake û nadeyne, lê yekser datîne ser serê xwe û jî mal derdikeve. Perûkeyê xewna gelek keçan kire rastiyek."

Xelat, di van herdu salên borî de 15 perûke kirîne: "Perûk pir wext jî me re vedigerîne."

Berevajî keçan, kur pir hez jî bikaranîna perûkan nakin û li gor wan ew dikarin porên xwe bi her modêleke ku bixwazin lihevbînin, lewma kur bi radeya keçan bi perûkan ve mijûl nabin, û wek ew bi xwe jî behsê dikin bêtir ew kurên ku muyên porê wan weşiyane yan keçel in, perûkan bikartînin.

Arezû di derbarê helwestên kuran de, nerînên xwe wiha tîne zimên: "Mixabin dema kur pê bihesin ku me perûk bikaraniye, henekên xwe bi me dikin û gotinan di ber me re diavêjin."

Nebez Cemal, li bazara Silêmaniyê perûkan difroşe, dibêje ku, wan perûkan ji Tirkiyeyê û Çînê tînin û ji ber yên sexte di dema bikaranînê de tên naskirin, keç bi pey yên orijînal de digerin: "Hinek jin tên dibêjin em hez nakin destkariya porên xwe bikin, lewma em wan perûkan dikirin ku hemû texlît têde heye."

Civaknas û pisporên karûbarên civakî van şêweyên lixwekirin û alavan vedigerinin çavlêkirin û şopandina modêlên nû û li gor wan bi riya kenalên asmanî û torên înternêtê ev cureyên modêlan bi hesanî, di nav civakê de, belav dibin.

Heme Resûl, lêkolînvanê civakî, di derbarê bikaranîna perûkan de wiha dibîne, ku armanca wan kesên ku perûkê bikartinin, balkişandina kesê beramber e. Aliyê xerab ew e ku, ew kes rûyê xwe yê resen jî kesê beramber vedişêre û pirsgirêkên pisikolojîk li cem wan peyde dibin: "Bikaranîna perûkan rengeki sextebûnê ye."

Peywendiyeke telefonî ya evîndarî wiha li Henase kir ku biryarê bide, porê xwe yê xwezayî bi perûkeyekê biguhere û niha hin jî bi berdewamî bikartîne. Henasê ji Rûdawê re got: "Rojekê têkiliyeke min ya telefonî bi kurekî re çêbû, ji min re got ez hez jî porê dirêj dikim, ez jî neçar bûm perûkeyekê bikirim û piştre dema kur ez dîtim jî min re got: 'Ez serxweşê porê teyî dirêj im.' Wiha em niha dildarên hevdû ne."